# BasNûçe
HERDEM RASTÎ



**Armanc:**
**Sirgûnekî din ku dixweze vegere**
➜ 16

ROJNAME YA HEFTEYÎ YA NÛÇEYÎ • BIHA 2.5 TL
HEJMAR 8 • 13 - 20 HAZÎRAN 2014 • WWW.BASNEWS.COM

# Kerkûk, Quds a Kurdistanê ye



Piştî ku çekdarên DAÎŞ'ê Mûsil bidestxistin û xwestin Kerkûkê jî têxin bin sihêtiya xwe, hêzên Pêşmerge ketin Kerkûkê û rêveberiya bajêr ji artêşa Iraqê vergirtin. Kerkûk niha bi temamî di bin kontrola rêvebiriya Kurdistanê de ye. Rejima Bexdayê ji 2006'an virve xala 140'î ya makezagonê bikar nedianî û rê li referandûmê venedikir.
➜ 3

## DAÎŞ: Belaya nû

DAÎŞ ku ji aliyê Ebû Bekîr Baxdadî ve hat damezrandin demek dirêj li dijî YPG'ê şer kir û niha xwedî 10 hezar çekdar e. DAÎŞ'ê bi hêzek mezin êrîşî Mûsilê kir û li Rojhilata Navîn bu belayek mezin û êdî li cîhanê dibê sedema nîqaş û tirsê.
➜ 4-5



## Rojev: Licê

Li Tirkiye zêdetirî 20 roj in ku li Licê ya Amedê li diji çêkirina qereqolan çalakî tên li darxistin û di dawiyê de piştî midexaleya leşkeran du çalakger hatin kuştin. Tevî banga Ocalan jî çalakî hê jî didomin.
➜ 13



➜ 8-9

## Bûrjûvazî li dijî serxwebûnê ye



Hevpêyvîn bi lêkolînêr û nivîskar Tarik Ziya Ekinci re: Bûrjûvaziya kurd naxweze ku Kurdistan serbixwe bibe.

➜ 12

## Rêçên Îskenderê Mezin binav dibin!



Bendava Cizîrê çav li rêye ku avakirina wê di vê mehê de destpêdike dibe sedema têkçûna gelek cihên dîrokî û derdoreke dewlemend a xwezayî.

➜ 11

## Kurdên Lûbnanê: Me ji bîrnekin



Kurdên Lûbnanê xwedî taybetiyekê ne ku pişavtina ziman û çandê pir bandor lê nekiriye, bi saziyên xwe çanda kurdî didomînin û hêvîdar in ku neyên jibîrkirin.

# Mahabad a peytexta Komara Kurdistanê

WELAT BAZ

Bajarekî ji parezgera Urmiyê, Mahabada navdar e. Mahadab ji mêj ve bajarekî kurda bûye û rûniştvanên wê tev kurd bûne. Piştî ku Mahabad bû navenda Komara Kurdistanê ev bajêr di dîroka siyasî ya kurdan de wek remzekî netewperweriya kurdên nav da.
Herwiha ji bilî baldariya siyasî sûk û bazara bajêr jî li Kurdistanê nawendeke girîng bûye.
Navê Mahabadê yê kevn Sawicbilaxa Mûkrî ye ku niha jî ji alî gelek kesan ve wek Seblax tê binavkirin. Piştî hatina Rizaşahê Pehlewî, navê bajêr wek gelek bajarên din yên Kurdistanê hat gûhertin û bû Mahabad. Hinek jêder navê bajêr bi peyva Mah-abad, Madabad û hinek jî wek "bajarê ku mezinan ew ava kirine" şirove dikin. Hinek jî dibêjin ku Mahabad navê yekem pêxemberê Ecema ye.
Mahabad navenda herêma Mûkriya ne. Bajêr ji bakûr ve cîranê Gola Urmiyê û herêma Sildoz, ji rojhilat ve yê Miyandûaw û Tîkab, ji başûr ve cîranê bajarê Bokan û ji rojava ve jî cîranê Başûrê Kurdistanê ye.
Mahabad ji deryayê 1320 metre bilind e. Bajêr di nav çiyayên Kanîşêxan, Qulqulax, Kela Sarimbeg, Çiyayê Zawaboke, Deşta Mecîd û Berde Sipiyan de cîh digre.
Rûbarê Mahabad di nav bajar de li kêleka meydana Çarçira derbas dibe û bedewiyeke taybetî dide bajêr.
Li rojavayê bajêr li ber ava Rubarê Mahabadê avbendek hatiye çêkirin. Gola bendavê û çandiniya avî bûye sedema avadaniya gundên derdora bajêr. Ev rûbar piştî ku ji gelek gundan derbas, nav Gola Urimiyê dibe.

**Dîroka Mahabadê**

Dîroknas Betlemyos ji bajêr re Daroşah, Ravlînson jî navê Mahabadê wek Darayas bibîr aniye. Hîn jî li nezî Mahabadê gundekî bi navê Diryas heye û ev gund di demên kevn de wek navenda heremê bûye.
Li gor jêderên Asûrî yên nivîskî li derdora rêzeçiyayên Zagros çend îmaretên bi navê, "Xirxar, Elîpî, Elbiriya û Mana" hebûne. Li gor lêkolînan Manayî li başûrê Gola Urmiyê li Mahabada niha bicîh bûne û herema desthiltdariya Manayîyan ji keviyê rûbarên Sîmîn û Zerîn heta bajarên Bokan û Seqiz fireh bûye.
Li gor salnameyên Asûriyan koça êlên Arî ji bo xaka Iranê di sedsala 9'an de destpekiriye û ew li derdora rêzeçiyayên Zagros bicîh bûne. Navê bav û kalê kurda şaristaniya Med cara yekem di sala 836an de, di van salnameyan de derbas dibe. Herwiha ev belgeyên dîrokî behsa têkelîyên Med û Manayîyan jî dikin.
Berî zayînê di sedsala 7an de, desthilatdariya Medan li başûrê Gola Urmiyê belav bû, lê heta dawiya vê sedsalê jî hebûna Manayiyan jî li heremê domkir.

**Qebrên Medan li Feqreqa**

Yek ji nîşan û hebûna Medan li herema Mahabadê bermayiya "Feqreqa" ye ku li bakurê Mahabadê ye. Di vê bermayiya kevnare de qebrên mîrên Medan cîh digrin.Feqreqa 20 km li bakurê Mahabadê li nêzî gundê Îndirqaşê di singa çiyakî de hatiye kolandin. Di Feqreqa de çar stûnên kevir bal dikişînin ser xwe. Di hundirê Feqreqa de sê gor hatine çêkirin û li gor hin dîroknûsan yek ji wan gora Ferwertîşê, padîşahê Meda ye.
Mahabad û derûdorê li gor pêvajoya dîrokî di bin desthilatdariya Medî, Axamenişî, İskenderê Mekedonî, Eşkanî, Sasanî û di Erebên Emewî û Ebbasî de maye. Paşê kurdên "Hizbanî" heremê ji Ereban girtine.
Piştî hatina Mongolan ya sedsala 13an de ku bajarê Meraxê wek paytext hilbijartibûn, demeke dirêj li heremê man. Ji ber vê yekê navê hin çiya û deştên heremê hîn jî bi Mongolî tên binavkirin.
Di sedsala 15'an de Mîrê Kurd Seyfedînê Mukrî ku ji tayfa kurdên Baban bû, heremê ji Mongolan stend û Dolbarîk, Axtaçî, Îl Têmor û Sildozê bi Mahabadê ve giredabû. Bi vî awayî Mukriyan li derdora Mahabadê asasê mîrnîşinekî xurt avêtibûn. Herwiha bajarê Mahabada îroîn jî ji alî wan ve hatibû avakirin.
Di dema Sefewiyan de Rojhilatê Kurdistanê gelek caran di navbera Dewleta Osmanî û Sefewî de bû qada şer. Hakim û desthilatdarên herêmî yên Kurd ji ber ku nikaribûn xwe ji artêşen van dewletan biparêzin, carna di nav herdû împaratoriyan de ref duguhertin. Ji ber ve yekê gelek caran artêşên Osmanî û Sefewî li Kurdistanê tevkujiyan pêkanîne. Herema Mahabadê jî ji hovîtiya van artêşan para xwe digirt. İmparatoriya Sefewî di dema Şah Ebbas de, gelek bihêz bû. Di wê demê de ji bo dagirkirina heremên Rojavayê Îranê Sefewîyan leşkerên xwe ber bi Kurdistanê ve kişandin.
Di van şeran de mîrê eşîra Mukrî Şêx Heyder û kurê wî Qubadxan hatin kuştin. Mîrê nû Siltan Budaq, Mahabadê wek navenda desthilatdariya Mukriyan hilbijart û di dema jiyana xwe de ji bo avedaniya Mahabadê gelek karên baş kir.


Qazî Mihemed


Dîmenek ji Mahabadê

**Mizgefta Sor**

Pira Sor, Mizgefta Sor, kerwanseray, hemam, qenalên avê yên nav bajêr, avbendên nav bajêr hemû yadîgarên dema desthilatdariya Siltan Budaqê Mukrîne. Ji van berhemên giranbiha îro Mizgefta Sor liser piyaye.
Mizgef li rex Çemê Mahabadê cîh digre. Dîwarên wê bi kevir, kerpîç, qorûgêç, banê mizgeftê jî bi stûnên darîn hatine çêkirin. Jêrxana mizgeftê 300 metro dirêj û 150 metre jî fireh e. 10 stunên kevirîn û 18 gunbedên ku ji kerpîçan hatine çêkirin, bûne sedem ku Mizgefta Sor mîna şûnewarekî dîrokî bê hesibandin.
Di dîroka dawiya sedsala 19'an de dû serhildanên netewî yên Kurdan ku herema Mukriyan yanê bajarê Mahabad û derdorê xistibû bin tesîra xwe; tevgera Şêx Ubeydulahê Nehrî û Hemze Axayê Mungûr bû.

**Bajarê nav mijê**

Bajarê Mahabadê di dema şerê yekem de jî leqayê gelek êş û eleman hat. Serokeşîrên Kurd, yên di bin bandora Dewleta Osmanî de bûn bi fitkirina wan qonsolosê Rûs li Mahabadê kuştin. Piştî vê bûyerê leşkerê Rûs ket bajêr, Kurdan li dijî dagira Rûs li berxweda û di nav aliyan de şer derket. Leşkerê Rûs tevkujiyekî pêk anî û nêzî 5000 kes ji xelkê bajar hatin kuştin.
Piştî çûyîna Rûsan, vê carê Osmanî ketin Mahabadê û li nav bajêr û li herêma Mukriyan bi tawana hevkariya bi Rûsan re gelek kesan bidarde kirin. Mahabad piştî van serpehatiyên xwînî careke din hat avedan kirin.
Heta sala 1943'an bajarên Bokan, Nexedê, Şîno, Mîyandûaw, Şahîndêj, Tîkab, Saqiz, Bane, Serdeşt û Pîranşar bi Mahabadê ve giredayî bûn. Paşe ev bajar ji Mahabadê hatin cudakirin û bi Urmiye û Sine ve hatin girêdan.

**Peytaxta Komara Kurdistanê**

Piştî bidawîbûna şerê cîhanê ê duyêm Îran ji alî Artêşa Sowyetê û Îngîlizan ve hat dagirkirin. Guhertina rewşa siyasî ya di nav Kurdan de bû sedemê legerîna tayinkirna qedara xwe. Bi vî awayî serekên Kurd yên Mahabadê jî ketin nav hewldanan.
Di encam de di sala 1946'an de li Mahabadê di bin serokatiya Qazî Mihemed de Komara Kurdistan hat damezirandin. Di dema revebiriya komarê de li heremê ti hebûna dewleta Îranê nemabû. Rojhilatê Kurdistanê di dema xwe ya herî azad de bû. Ev serpêhatiya azadiya Kurdan li Rojhilatê Kurdistanê salekî domkir û dîsa di sala 1946an de bi awayekî xwînî bidawîi bû.
Dewleta Îranê piştî ku Artêşa Sor ji Îranê kişiya berê xwe da Kurdistanê û pêşewa Qazî Mihamed tevî çend hevalên wî bidarde kir.
Beriya ku li Îranê xwendingehên nûjen bên damezrandin, di mizgeftan de ders dihat dayin. Li Mahabadê jî Mizgefta Sor wek nawendeke zanyariyê bû. Di vê mizfgeftê de Mela Camiî yê navdar ders dida xwendekaran.
Rêvebirên komarê jî gelek girîngî didan xebatên rewşenbîrîyê. Di dema Komara Kurdistanê de yekemîn xwendingeha modern jî ku navê wê Seadet hatibû damezrandin. Di çaxa komarê de serekên demê, girîngiyekî mezin dan çêkirina dibistan û weşandina rojname, kovar û pêşketina warên din yên çandî.
Ji ber kevneşopiya qîmetdayîna ronakbîriyê Mahabad bûye hêlîna şaîr û rewşenbîryê jî.
Di Awestaya pêxember Zerdeşt de tê gotin ku yezdan her dewerekî li ber dilê xwediyê wê şêrîn çêkiriye. Mahabadiyên sirgûne jî çav li rê ne ku rojekî bizivirin ser xaka şêrîna ber dilê xwe.

# Kerkûk êdî Kurdistan e!

Piştî ku çekdarên DAÎŞ'ê Mûsil bidestxistin û xwestin Kerkûkê jî têxin bin kontrola xwe, arteşa Irawê çekên xwe berdan û reviya. Li ser vê Hêzên Pêşmerge kontrola Kerkûkê bi temamî xist bin kontrola xwe. Tê ragihandin ku ji hêla îdarî ve jî êdî kontrola Kerkûkê di testê Herêma Kurdistanê de be.
Li gor agahiyên ku li heremê tên, piştî ku arteşa Iraqê Kerkûk terikand Pêşmergeyên kurd bajar bidestxist.
Berdevkê Wezareta Pêşmerge Cabbar Yawer got, "Li Kerkûkê leşkerên Iraqê neman, bajar bi temamî di bin kontrola Pêşmerge de ye" Mistefa di daxuyaniya xwe ku li Kerkûkê kir de ragihand ku li navçeya Havîce ku 56 kîlometre li rojavayê Kerkûkê ye di navbera Pêşmerge û DAÎŞ'ê de pêvçûn derdikevin û di pêvçûnan de du Pêşmergeyan jiyana xwe ji dest dane, hejmarek mezin a DAÎŞ'ê jî hatiye kuştun. Mistefa wiha domkir, "Hêzên Pêşmerge li tevahiya Kerkûkê kontrol pêk aniye. Me dil nîn e ku em ji cihê lê ne wêdetir biçin. Ji bo ku ji Hawîcî yê wêdetir tu êrîş neyên kirin emê li virbin."
Midûrê navçe û bajarokên Kerkûkê Serhad Qadir jî diyarkir ku Pêşmerge ji bo qewirandina DAÎŞ'ê ya li Hawîcê amadekariya operayonê dikin û got niha li Hawîce rewş asayî ye lê Hawîce û Reşat ti kontrola DAÎŞ'ê de ye. Kadir ku ragihand ku pêşmerge li Mûltelke ya ku 24 kîlometre nîzikî Kerkûkê ye hatine bi cihkirin û ji bo operasyonê amadekariyên xwe bi dawî kirine. Di vê navberê de li Kerkûkê li cadde û kolanan tewgereke leşkeri ya mezin niştecî ye. Peşmerge ji bo talûkeya êrîşan di teyaqûzê de ye.
Waliyê Kerkûkê Necmeddin Kerîm jî da zanîn ku ji bo ku li bajêr tu pêvçûn dernekevin bi her alî ve tedbîrên ewlehiyê hatine girtin. Kerîm wiha axivî, "Divê gel rehet û bê xem be. Hêzên me tedbîrên ku pêwîst in bi cih anîne. Heke kul i tevahiya Iraqê pêvçûn destpê bikin berpirsê vê Nûrî El Malîkî ye.
Fermandarê hêzên Pêşmerge ku li Kerkûkê bi cîh bûne Nadirê Qadir jî piştrastkir ku ewlehî û kontrola bajêr di destê wan de ye. Generalê Pêşmerge Şêrgo Raûf jî daxuyaniyek da AFP û got, "Ji bo ku em hebûna xwe ya li Kerkûkê xurttir bikin û ber bi cihên ku di destê DAÎŞ'ê de ne bimeşin em li benda fermanê ne."
Berdevkê Çapemeniyê yê Wezareta Pêşmerge Halgurd Hîkmet jî diyarkir ku heke DAÎŞ êrîşî wan bike dê bersiva herî tund bidin û got rêxistinê herêmên Iraqê yên Sunî ji xwe re wek hedef diyarkirine. Hikmet wiha pê de çû, "Hêza Pêşmerge ji bo wan ne pariyekî biçûk e. Talafer, Sincar û cihên nêzî wan deran di bin kontrola me de ne. Hê tu êrîş li van deran derneketine holê. Doh li aliyê Sîncarê di navbera me û wan de pêvçûnek biçûk derket. Sedema wê jî bidestxistina me ya cihên ku artêşa Iraqê terk kiribû. Dema ku wan dîk ku yên hember Pêşmerge ne, bi şûnde vegeriyan. Niha em li Tûzxûrmatû û Xaneqîn û Mendalî ya Diyala'yê ne û DAÎŞ nikarê nezî warên ku em lê ne bibe. Em jî naxwazin ku raste rast bi wan re di nava şerkevin.
Rejîma Bexdayê ji 2006'an vir ve maddeya Makezagonê ya 140'î bi kar nîne û rê li referandûmê venake.




## DAÎŞ di riya Bexda'yê de ye

Çekdarên DAÎŞ'ê ku Mûsil bidestxistin piştî ku nikarîn ji bariyera Pêşmerge xilasbin, vê carê berê xwe dan Bexda'yê û bajarê Tikrîtê ku leşkerên Îraqê beriya çend rojan vala kiribûn jî bidestxistin hewil didin ku xwe bigihêjin payîtexta Îraqê. DAÎŞ'ê waliyê Tikrîtê destgir kirin û girtiyên li Girtîgeha Tafsîratê jî serbest berdan. Çekdarên radîkal ku Sûleyman Beyk jî bidestxistin, avêtin ser bajarê Sammara'yê ku artêşa Îraqê li wir liberxwe dide, ya li ser riya Bexda'yê.

## Fermandarê YPG: Kerkûk Quds a Kurdistanê ye

Fermandarê Giştî yê YPG Sîpan Hemo jî bal kişan ser planên êrîşa DAÎŞ'ê ya li hember Kerkûkê û got, "Kerkûk Quds a Kurdistanê ye. Em wek YPG amade ne ku tevî her şert û mercan bi birayên xwe re parastina Kerkûkê bikin. Ji bo kurdan fersendeke dîrokî derketiye holê. Serfirasî ya kurd û Kurdistanê ye. Ji berk û yên mafdar em in. Me îro bi avayî zelal diyarkir ku em bi hêza fermî ya Herêma Kurdistanê Pêşmergeyan ve gelên Kurdistanî biparêzin. Me di destpêkê de ev wek daxwazekê diyarkir. Pêvçûna di navbera DAÎŞ-Pêşmerge de piştî bûyerên ku li heremê qewimin pêvçûnên ewil jî li deriyê ser sînor yê Til Koçer ku nêzikî Mûsilê ye derketin. Fermandarê Peşmerge yê 8. Alaya Pêşxabûr Haşîm Sîteyî da zanîn ku Deriyê Rehîbe ku li Til Koçerê ye ketiye destê Pêşmerge û piştî pêvçûnê DAÎŞ ji bajêr qewirandine. Herwiha aliyê din yê derî jî niha di destê YPG de ye.
DAÎŞ ya ku kontrola Mûsilê bidestxis pişt re êrîşî bajarokên wek Riyad, Havîe û nehiyeya Abbasî ku li başûrê Kerkûkê ne û bi piranî ereb û tirkmen lê dijîn kir. Tê gotin ku leşkerên İraqê yên li van deran çekên xwe berdane û herêm teslîmî DAÎŞ'ê kirine û hêzên Peşmerge li doraliyê Kerkûk û Mûsilê hatêne bi cihkirin û parastina vir bidestxistine.
Di vê navberê de Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî Pêşmerge hişyar kir ku ji sînorên Kurdistanê nebihorin. Piştî agahiya ku DAÎŞ hewildide ku êrîşî Tûzxûrmatû ya bi ser Selahaddînê ve ku bi piranî tirkmen lê dijîn bike Pêşmerge hatin herêmê û kontrol bidestxistin. Qeymaqamê Tûzxûrmatû'yê Sellal Abdûl da zanîn ku rewşa ewlehiya navçeyê her diçe xirabtir dibe û ev agahî dan, "Nehiyeya Sûleymanbeg, gundên wek Yengîce û Bastamliyê ku girêdayî Tûzxûrmatû'yê ne di bin kontrola DAÎŞ'ê de ne.Piştî vê hêzek Pêşmerge ku ji du tûgayan pêk tê hat navçeyê û dê piştgiriya parastina navçeyê bikin. Di vê navberê de tê gotin ku tirkmenên şîa yên ku li vir dijîn malen xwe vala kirine û xwe spartine Hewlêr, Kerkûk û Silêmaniyê. di navbera Pêşmerge û çekdarên DAÎŞ'ê ku xwestin êrîşi cihên petrolê yên li başûrê Kerkûkê bikin de pêvçûn derket û 10 endamên DAÎŞ'ê hatin kuştin û 7 ji wan jî birîndar bûn. Hat diyarkirin ku yek ji miriyên DAÎŞ'ê rêvebirê sereke yê rêxistinê Abû Abdûl Dahman e.

## Bi deh hezaran koçber direvin Hewlêrê

Ji hêla din ve piştî desteserkirina DAIŞ'ê Bi hezran kesên ku ji Mûsulê reviyan hewl didin ku derbas Duhok û Hewlêrê bibin. Piştî 6'ê Hezîranê li Mûsulê bûyer derket ezdî, şabak, kurd, asûrî û erebên şia derbasî Kurdistanê dibin. Şerê ku li Rojava û Sûrî berdewam dike bû sedeme bi hezarana malbatên kurd û ereb ku derbasî Mûsulê bibin. Piştî ku DAIŞ'ê vir dagir kir mecbûr man ku cardin koç bikin û derbasî Hewlêrê bibin.
Ji hêla din ve bo Mûsuliyên ku derbasî Hewlêrê bûne xebata çêkirina qampek hat despêkirin. Berpirsiyarên Parêzgeha Hewlêrê û Netewên Yekbûyî (NY) piştî ku biryar dan ku malbatan li ku bi cîh bikin bi makîneyên xebatê zemîn serarast kirin.
Qeymeqamê bajaroka Xebatê Rizgar Mistafa ku li kêleka Hewlêrê ye got ku hejmara koçberan pir e ji ber wê sedemê me destûr neda derbasê nav bajêr bibin, tenê kesên nasê wan hebe dikarin derbasî navendê bibin. Di nav kesên ku xwe radestî Kurdistanê kirine de parêzgerê Mûsulê Esil Neceyfî, Artêşa Iraqê, bi hezaran sûbayên ku girêdayî fermandariya ewlekariya Mûsulê ye û gelek leşker û polês jî hene. Serokê Hukumeta Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî bang kir ku li gelê Mûsulê hetanî destê wan tê û di çarçoveya qanûnan de xwedî bê derketin û destnîşan kir ku divê Qomîsertiya Bilind ya Koçberan a NY (UNHCR) alîkariya koçberan kir.

# Li Rojhilata Navîn belaya nû: DAÎŞ


RAWÎN STÊRK

Bi destpêka şerê navxweyî ku li Sûriye 3 sal in didome vir ve li Rojhilata Navîn bîreke şeytanî ya nû li cîhanê rû dide. Sûriye ku di hawireke bê kontrolde ji demeke dirêj ve ye him di rojeva cîhanê de cih girt him jî bo komên radîkal yên îslamî bû navendeke nû ya cîhadê, niha bi taybetî li sere Rojhilata Navîn lê bi tevahî li sere cîhanê dibe bîreke belayê. Di nava rêxistin û komên radîkal de ya ku demeke kin de ewqas xwe pêş ve bir û wek El Qaîde niha bi rêbazeke terorî ya gerdûnî rojeva cîhanê werdigire Dewleta Îslam ya Iraq-Şam'ê (DAÎŞ) êdî gihêşt asteke ku Rojhilata Navîn gelek mihengan têk bibe. DAÎŞ bi piştgiriya Esed, Malîkî, Îran û gelek dewlet û rêxistinên îstihbaratê li Sûriye hat pişt mistdan û niha jî gihêşt hêzeke ku bajarê Musilê bi dest xist û ber bi Kerkûkê dimeşe. Dema ku li Sûriye şerê navxweyî dest pê kir nêzikahiyên gelek derdoran ev bûn ku wek Lîbya, Tûnûs, Misir û dewletên din ên Rojhilata Navîn ku têk çûn Esed jî di demeke kin de bê walgerandin û Bihara Ereban li Sûriye jî rewşê veguhezîne. Lê belê ne Amerîka

**Ferhad Hemo (Rojnameger)**

DAÎŞê çend cara hewlda ku herêmên Kurdistanê bi destxe lê nebû. Li dora Efrînê nikarî ku kontrolê bi destxe, li doraliyê Qobanê DAÎŞ bi cîh bûye. Bajarê Carablûs di destê wan de ye. Bajaroka Şirîn jî di destê wan de ye. Li herêma Cizîrê hin der di destê rejîmê de ne. Heke ku hêzên kurdan hevkariya hev nekin rewş xirab e. Divê hemû hêzên Kurdistanî bibin yek û tev bigerin.

bi avayekî raste rast ket nav şer, ne Tirkiye karî ku bi avayekî vekirî bibe midaxîl û ne jî hêzên ku li hember Esed hevkariya hev kirin bi ser ketin ku Esed biçe. Her wiha ew jî bû sedem ku gelek komên radîkal yên îslamî li wir niştecî bibin li gor xwe tev bigerin.

**Radîkalên îslamî li wir hatin komkirin**

Piştî ku El Qaîde bi taybetî li hemberî Amerîka û şirîkên wê li cîhanê deng veda û ji bo kesên radîkal bû kiblegehekê şiklekî terorê yê nû li cîhanê rû da. Lê bi kuştina Ûsame Bîn Ladîn û gelek kiryarên El Qaîde ku ne li gor tu pîvanan in prestîja xwe têk bir û radîkalên ku li cîhanê belav bûne bê serî û ji hev dûr man. Bi avabûna DAÎŞ'ê re ji bo van hedefek nû derket holê ku di bin ala vê rêxistinê de cih bigirin û bê kontroliya li Sûriye jî ji vê belayê re bû bihûştekê.

Her çiqas ku di bin bana El Qaîde de hatibe avakirin jî li Sûriye DAÎŞ û El Nûsra wek mayinên serseri bûn xwediyê cihekî fireh û her ku çû xwe bi rêxistin kirin û gihêştin hêzeke ku ni navbera YPG û DAÎŞ- El Nûsra de pêvçûnên dijwar didomin. Esed li vir helbet ji bo demekê paş ve kişiya û kontrol hişt ji YPG re. Li gor planên xwe yên dirêj Esed plana ku du hêzên derî kontrola wî bi hev re şer bikin xist dewreyê. Li gor vê piştgiriya DAÎŞ'ê ya çekdarî û maddî ji aliyê Esed ve tê kirin û herdû dijminên Esed, YPG û DAÎŞ di nava hev de ketin nava şer. Bêyî Esed tê zanîn ku dewletên wek Tirkiye, Erebistana Siud, Katar û hin



Baas bi wan re hevkariyê bike. Tevî ku Arteşa Azad a Sûriye ji piştgiriya hêzên navneteweyî mehrûm ma û rewşa li Sûriye guherî ji van herdû rêxistinan re jî derfetên nû derketin holê.

**Piştgiriya Esed**

Wek tê zanîn li başûrê Sûriye PYD hin kontrol xistin destê xwe û li vir Esed dev ji hakimiyeta politik û îdarî berda û YPG liv ir bû hêza sereke. Ji ber ku li heman qadê gelek cih di bin bandora DAÎŞ'ê de ye li vir demek dirêj e rêxistinên îstihbaratê jî biştgiriya van rêxistinên radîkal dikin û ji aliyê wan ve tên kedîkirin.

Piştî ku li Îraqê demek dirêj e di warê siyasetê de hin ne zelalî di rojevê dene û herêma sunnî ya Îraqê, başûrê Sûriye û heya bige Urdunê jî di nava cihên ku DAÎŞ dixweze bi destxe de ye radîkalên îslamî hemû li vir hatin bi cîh kirin. Her wiha ji bo siyaset û dengeyên navneteweyî jî radîkalên li ser rû yê cihanê gihêştin hejmar û asteke ku talûke nîşan didin. Ji bo vê dibûya hemû radîkal li vê erdnîgarê bihatana komkirin û li wir bihatana îmhakirin. Lê hin hesabên polîtîkaya navneteweyî niha têk diçin. Bi hezaran kesên radîkal li her deverên cîhanê bi riya derfetên rêxistinên îstixbaratan la vir gihêştin hev. Gelek ji wan li gor plana hêzên navneteweyî mirin, hev û din kuştin û enerjiya di wê çarçoveyê de li qadekê hate bi cîh kirin. Lê piştî ku mîlitanên kevn yên El Qaîde, diz û tecawûzkarên di girtîgehên dewletên erdnîgara ereban hatin berdan û berê wan dan DAÎŞ'ê, ev rêxistin di kontrola hêzên navneteweyî û Rojhilata Navînî de derket û niha dibe belayek nû ji bo vir. Ew hamû pêkhatin ji bo DAÎŞ'ê wateyeke girîng nîşan dida ku derfetên bi hêzbûnêke xurt ji DAÎŞ'ê re derkevin holê. DAÎŞ'ê bi polîtîkayeke fênek ew hemû derfet ji bo berjewendiyên xwe bi kar anî û êdî gihêşt asteke ku bi dewletê ku din ava xwe de bi tevlihevîyan re mijûl in di nava şerkeve. Her wiha asta dawî jî ev xal e.

**DAÎŞ êdî bela ye ji bo Rojhilata Navîn**

Piştî ku li Rojava xwe bi rêxistin kir valahiyên li Sûriye û Îraqê baş analîz kir bi şûn de DAÎŞ'ê berê xwe da Mûsilê û bajarekî stratejîk bi dest xist. Li gor agahiyekê hejmara çekdarên DAÎŞ'ê bihorî ji deh hezarî û niha ba qasî arteşekê çek di destê wan de ne û bi rêbazên hovane li hember gelan terorê dibarîne. Asta ku rêxistin gihêştê wisa ye ku êdî gelek kevir dê li Rojhilata Navîn ji cih bên livandin.

**Mûsil ket DAÎŞ ber bi Kerkûkê ve dimeşe**

Di 10 Hezîranê de ajans û televizyonên cîhanê bi qod a 'lezîn' nûçeyên li Mûsilê weşandin. DAÎŞ'ê bi hezaran çekdar li

**Mutlu Çiviroğlu (Dengê Amerîka)**



**Divê kurd hesabên biçûk bidin aliyekî û bên ba hev**

DAÎŞ rewşa li Rojava ji bo xwe wek tehdîtekê dibîne. Wek tê zanîn li Rojava gelek rêvebirên sereke jin in û ew DAÎŞê rehetsiz dike. Ji ber ku kurd komên ku ne misilman in jî diparêzin jî DAÎŞ di nava nerazîbûnê de ye. Hin ne razîbûnên bi vî rengî li hember Kurdistana Başûr jî dihîsin. Kurdistan di warê fînans û rewşa civakî jî modelek nû ye û DAÎŞ vê yekê jî naxweze. DAÎŞ ne tenê ji bo kurda, ji bo hemû herêmê û ji bo hêzên cîhanê jî talûkeyeke mezin e. Efganîstan, Pakîstan, Tûnûs, Cezayîr, Erebistana Siud, Çeçenistan, Bosna, Arnavutluk piştevaniya DAÎŞ ji hela fînansê ve dikin. Di demên dawî de rejîma Esed jî di nava hewildanek wisa de ye. Di êrîşa Mûsilê de gelek çekên arteşa Irapê ketine destê DAÎŞê. Ew çek yên Amerîka ne û modern in. Sibê roj dibe ku wan li hamberî Hewlêr, Silêmanî, Amed û hemû Kurdistanê jî bi kar bînin. Divê hemû hêzên Kurdistanî bên ba hev. PDK, YNK, Goran, PYD û komên din divê li hev rûnin û li hember vê êrîşê tev bigerin.

wir gihandin hev û êrîşî Mûsilê kir. Di êrîşê de di despêkê de balefirgeha bajêr hate dorpêçkirin û pişt re jî bi tevahî bajar ket destê DAÎŞ'ê. Di pêla êrîşê de kontrola bajêr bi temamî ket destê wan û hemû dewlet û hêzên Rojhilata Navîn ketin hişyarîtiyê. Di êrîşê de deriyê sînor yê Rabîa ket destê DAÎŞ'ê û talûke her kêlî mezin bû. Di vê navberê de YNK û PDK avahî û saziyên xwe yên Mûsilê valakirin û tevî bi sedhezaran welatî û kesên berpirs dest pê kirin ku ji bajêr birevin.

Beriya êrîşa Mûsilê DAÎŞ'ê bi erebeyek bambe barkirî li Tûzxûrmatû û Celawa yê êrîşî avahiyên YNKê kir û bi dehan kes mirin. Pişt re jî du balfirên şer û 200 doçkayên li balefirgeha Mûsilê ketin destê DAÎŞ'ê. Piştî êrîşê kurdên êzidî suryanî-keldanî, ereb, tirkmen yên li Mûsilê berê xwe dan Kurdistana Başûr. Piştî vê Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî derbarê rewşa Mûsilê de peyamek belav kir û ji hevwelatiyên Herêma Kurdistanê xwest ku hevkariya daniştvanên wî bajarê lê qewimî bikin. Di peyama Barzanî de wiha tê gotin: ''Mixabin ji ber têkçûna artêş û hêzên ewlekariyê yên Îraqê ku nikarîn li Mûsilê xelkê biparêzin, çekdarên DAÎŞ'ê dest danîne ser bajarê Mûsilê û vêna jî metirsiyeke mezin çêkiriye. Hevwelatiyên Mûsilê ji tirsa can, bombardiman, nemana xwarin û xizmetguzariyan, bajarê xwe bicîh dihêlin.''

Piştî talûkeya bi vî rengî rêveberiya Kurdistanê biryar da ku Pêşmerge ji bo şer amadekariyan bi dawî bike û li benda fermanê be. Di vê navberê de DAÎŞ'ê tevahiya bajarê Nînovayê bi dest xist û hin navçeyên din jî xistin destê xwe û berê xwe da Kerkûkê.

**Balyozxaneya Tirkiye ket destê DAÎŞ'ê**

Di vê navberê de di roja duyem ya êrîşa rêxistinê de li hemberî balyozxaneya Tirkiye ya Musilê jî êrîş hate kirin û balyozxane ket destê DAÎŞ'ê. Di bûyerê de konsolosê Tirkiye, 2 zarok 3 ji wan jin bi tevahî 42 tirk ji aliyê DAÎŞ'ê ve hatin dîl girtin. Bi sedema ku DAÎŞ berv bi Kerkûkê dimeşe çûn hatina bajêr hat girtin û di roja duyem de Pêşmerge li navçeyên doraliyê Kerkûkê hatin bi cih kirin. Her wiha Hîzbûllah a Îraqê jî biryara ku li hember DAÎŞ'ê şer bike da, gelek eşîr û hêzên heremê jî piştgiriya bi vî rengî diyar kirin.

**Di navbera DAÎŞ û Pêşmerge-YPG de şer**

Piştî ku bi vî rengî êrîş firehtir bûn û DAÎŞ'ê dagirkirina xwe reşand, li ser sînorê navbera Rojava û Başûrê Kurdistanê li qeza Şingalê, şerekî giran navbera hêzên pêşmerge û çekdarên DAÎŞ'ê dest pê kir. Hat ragihandin ku YPGê di wî şerî de piştgiriya pêşmerge dike.

Ji hêzên kurdan peyamên hevkariyê

Bi dest pêkirina şerê di navbera DAÎŞ û Pêşmerge de rêxistin û hêzên kurdan jî daxuyaniyên piştgiriya parastina Kurdistanê dan. PYD di daxuyaniyek ji bo mijarê de da zanîn YPG amade ye ku piştevaniya Pêşmerge bike ji bo parastina Kurdistanê. Hevserokatiya KCK'ê jî piştî çeteyên DAÎŞ'ê Musul bi dest xist û li hemberî Herêma Federal a Kurdistanê gefan dixwe peyama "Gerîlayên Kurdistanê di serî de Şengal û hemû gelê me yê Başurê Kurdistanê biparêzin amade ye" da KCK'ê, diyar kir ku hem ji bo destkeftiyên gelê kurd ên li Rojava û Herêma Federal a Kurdistanê biparêzerin û hem jî ji bo azadiya gelê kurd pêk bînin divê Yekîtiya Neteweyî ya Kurd kombibe bang kir.

KCK'ê balkişand ser yêkîtiya neteweyî û wiha pê de çû: "Em ji bo parastina destkeftiyên Rojava û Başûr, bang li hêz, rêxistin, tevger û saziyên li her parçeyên welêt dikin. Divê hemû hêz, rêxistin û tevgerên kurd hesabên biçûk deynin aliyekî, yekîtiya xwe pêş bixin û bi komkirina Kongreya Netewî jî, xwenda sedsalî ya kurdan bi cih bînin." Her wiha YPG hêzek şan heremê û deriye Tîl Koçer yê ser sînor xist destê xwe.

**Kerkûk cara 3. ket destê pêşmergeyan**

Piştî ku artêşa Îraqê ji Mûsilê paş ve kişiya û bajar ket destê DAÎŞ'ê li Kerkûkê jî paş ve kişiyan û ji ber ku valahiyek li bajer dernekeve holê hêzên pêşmerge li wir hatin bi cihkirin. Bajar di dîrokê de cara 3.'e ku dikeve destê pêşmergeyan. Hemû tişt li Selahedînê bidawî hat Piştî kontrolkirina bajarê Mûsilê ji aliyê çekdarên DAÎŞ ve, çekdar ber bi bajarê Tirkrît ve diçin û beşek ji wî bajarî xistine bin kontrola xwe, cîgirê berê yê parêzgarê Selahedîn jî dibêje ku şerekî giran qewimiye. Hevdem endamê encûmena parêzgeha Selahedînê, Mela Hesen Mihemed got: "Çekdarê rêxitsina DAÎŞ hemû navçeyên bajarê Tikrît, navenda parêzgeha Selahedîn, kontrol kirine, tevî kontrolkirina avahiya parêzgehê û girtîgeha Tesfîrat ku bi sedan girtî tê de hene."

**Êrîşa DAÎŞ'ê tê çi wateyê û kê çi got?**

Gelek navên ku di warê pêkhatinên li Rojhilata Navîn pîspor in dîtbariyên xwe ji BasNûçe re parvekirin û anîn zimên ku talûke û texdît mezin e.

**Zêdetirî 500 hezar kesî xwe spard Kurdistanê**

Endamê Meclîsa Serokatiya PDK û Berpirsê Herêma Şeyhan yê PDKI'yê Alî Awnî da zanîn ku heya niha li Mûsil û navçeyên wê zêdetirî 500 hezar welatî li ber êrîşên DAÎŞ'ê reviyane û xwe gihandine Kurdistanê. Awnî got sînorên herêma kurdistanê yên nêzî Mûsil û Kerkûke ji aliyê Pêşmergeyan ve hatiye dorpêçkirin û li wir Pêşmerge di teyaqûzê de ne.

Di roja 3. ya êrîşê de 300 leşkerên Kurd ên zêrevanên sînorê Iraqê li qeza Hisêbe ya ser bi parêzgeha Enbarê ji aliyê çekdarên DAÎŞ'ê de hatine dorpêçkirin. Serokê Kurdistanê Mesûd Barzanî jî peyamek weşand û xwest ku pêşmerge dernekeve derveyî Kurdistanê û sînorên kurdistanê di bin her şert û merci de biparêze. Di vê navberê de dîsa roja sêyan bajarê Kerkûkê bi temamî ket bin kontrola pêşmergeyan. Serokê Îraqê Malîkî jî hewariya Amerîka kir ku bi hêzên xwe yên hewayî êrîşî DAÎŞ'ê bike..Berdevkê Wezareta Karên Derve yê Amerîkayê Jean Psaki jî daxuyand ku di derbarê êrîşên DAÎŞ'ê de ketine nava fikaran û vê rewşê ji bo herêmê bi talûke dibinin. Psakî wiha got, "DAÎŞ ne tenê ji bo Sûriye û Iraqê ji bo hemû heremê dexdîteke. Ev pêkhatin nîşan dide ku divê hemû hêzên herêmê li hamber vê yekê bi hev re têbikoşin û terorîstan ji gel cûdatir bikin. "

## Fehim Taştekin (Radikal)



DAÎŞ tevgerek ku piştî têkoşîna bi Amerika re derketiye holê û xwe bi rêxistin kiriye. Lê pişt re rewş guherî. Heya niha li hember kurdan gelek çalakî li dar xistin. DAÎŞ her tim li hember herêma Kurdistanê di nava hewildanekê debû. Ez ne di baweriya ku DAÎŞ Pêşmerge têk bibe de me. Polîtîkaya Tirkiye ya li hemberî DAÎŞ jî guherî. Êrîşa li hember Mûsilê dê bandorê li sewqiyata petrole ku di navbera Kurdistan-Tirkiye de dest pê kiriye jî bike. Divê hemû dewletên herêmê nêzikahiyeke cûda nîşandin. Di hevdîtina Rûhanî-Gul-Erdoğan de ev mijar hat rojevê û hate gotin ku dê hin tedbîr ji bo vê bêne girtin. Inşallah ew gotin dê bi cih bên.

## Mihemed Emîn Pencewînî (Siyasetmedar)

DAÎŞ dixwaze hemû Herêma Kurdistanê têxe bin destê xwe. Lê hikumeta herêmê di seride hayîdar e ji vê. Ji bo vê jî di nava hewildanê de ye. Mûsil bajarekî stratejîk e û piştî ku ket destê DAÎŞ gelek derfetên çekî û siyasî jî ketin destê wan. Kurdistan hêdî hêdî ber bi azadiyê ve diçe û gelek hêz dewlet vê yekê napejirînin. Talûkeya rewşê li holê ye lê herkes dizane ku DAÎŞ nikarê kevirekî jî li Kurdistanê bi destxe. Ji bo yekbûna kurdan ev yek divê wek fersendekê bê nirxandin û hemû hêzên kurdan pirsgirêkên xwe yên biçûk bidin aliyekî û bi hev re bimeşin. Malîkî banga piştevaniyê li gel Kurdistanê kir û dibe ku ev yek jî bibe başbûna têkiliyên di navbera Hikumeta Bexda û ya Kurdistanê de. Divê ev mijar bi her alî ve bi qezenca kurdan bi dawî bibe.

## Mustafa Seyfullah Kılıç (Rojnameger)

Niha di navbera hikumeta Iraq û ya Kurdistanê de hin pirsgirêk hene. Êrîşa DAÎŞ di vê xalê de girîng e. Ez ne bawerim ku di rojên pêş de di navbera pêşmerge û DAÎŞê de şerekî giran derkeve. Barzanî heya niha qet piştgiriya DAÎŞ nekiriye. Lî gelek data hene ku kontrola DAÎŞe di destê Tirkiye de ye. Alîkarî bi rêya Tirkiye ji DAÎŞ re diçin. Heke ku kurd dixwazin ku li herêmê bibin xwedî hêzek mezin, divê di destpêkê de pirsgirêkên di navbera hev de çareser bikin yan jî bidin aliyekî. Ev ji bo Barzanî jî ji bo YPG jî girîng e. Ku nebe DAÎŞ dê ji bo herdu aliyan jî bibe bela.






# Sîyasetê kurdan derheqê kurdkî de cidî nîyo!

**Wêrankerdiş û vengkerdişê dewanê kurdan reyde kurdkî (kurmanckî, kirdkî) êdî bilez helîyena, vîndî bena. Bitaybetî neslê neweyî ziwan ra temamen dûr kewenê. Serre bi serre qiseykerdoxê kurdkî hîna zaf kêmîyenê. Eke neslê ma yê ke emrê xo nika çewres ra cor o, mîyan ra wedarîyê, rewşa kurdkî kewena merhaleya xeterine.**



ROŞAN LEZGÎN

Dewleta tirkan bîy hîrê serrî ke bi hawayêko qanûnî seba kurdkî yew îmkano qijkek pêşkêş kerdo. Nika tutê ke sinifanê 5, 6 û 7. yê mektebê verênî de wanenê, eşkenê sey dersa weçînita hewte de saetêk kurdkî (kurmanckî, kirdkî) bimusê. Labelê kurdî nê îmkanî ra îstîfade nêkenê. Esas, sîyasetê kurdan yan zî sîyaseto ke nameyê kurdan ser o hereket keno, bi hawayêko nimite nêverdano kurdî nê îmkanî ra îdtîfade bikerê.

Heto bîn ra bîy çar serrî ke çend unîversîteyan de beşê ziwan û edebîyatê kurdkî abîyê, wendekarî hem lîsansê berz yê bitezî hem zî yê bêtezî kenê. Nê wendekaran hetanî nika ziwan, edebîyat û hunerê kurdkî ser o çend tezê muhîmî weşanayî. Labelê sîyasetê kurdan vera nê unîversîteyan de zî muxalefet keno.

Helbet nê îmkanî zaf zeîf ê, qîmê ciwînayîşê kurdkî nêkenê. Seba ciwînayîşê kurdkî çareyo tewr rast perwerdeyê bi kurdkî (kurmanckî, kirdkî) yo. Û ganî muheqeq kurdkî bibo wayîrê yew statu; qet nêbo mintiqaya kurdan de, Kurdistanê Bakurî de ziwanê resmî bo. La nê îmkanê ke anika estê zî zaf muhîm ê. Ganî kurdî hetanî peynî nê îmkanan ra îstîfade bikerê. Bi firsendê nê îmkanan berê perwerdeyê bi kurdkî û resmîbîyayîşê kurdkî akerê. Labelê Kurdî nê îmkanan ra îstîfade nêkenê!

Senî ke her kes pê zano, wêrankerdiş û vengkerdişê dewanê kurdan reyde kurdkî (kurmanckî, kirdkî) êdî bilez helîyena, vîndî bena. Bitaybetî neslê neweyî ziwan ra temamen dûr kewenê. Serre bi serre qiseykerdoxê kurdkî hîna zaf kêmîyenê. Eke neslê ma yê ke emrê xo nika çewres ra cor o, mîyan ra wedarîyê, rewşa kurdkî kewena merhaleya xeterine.

Nika kurdkî rewşeka zaf nazike de ya. Eke seba kurdkî ma her îmkan ra îstîfade nêkin, ma paweyê a roja xeyalî vinderin ke kurdkî bibo ziwanê perwerdeyî, hetanî o wext kurdkî helîyena şina, bena vîndî. Êdî ma se bikin zî apey açarnayîş mumkin nîyo.

Helbet dewleta tirkan kurdan reyde samîmî nîya. Polîtîkaya xo ya asîmîlasyonî ra fek veranêdayo. Herçiqas tayê îmkanî bi hawayêko qanûnî şinasnayê zî pratîk de wezîfeyê xo nêana ca. Mesela, hetanî nika seba kurdkî malimî tayîn nêkerdê. Binî de seba ke kurdkî aver nêşiro, seba ke kurdî nê îmkanî ra îstîfade nêkerê, nêverdana dersa weçînita pratîze bibo.

Çîyo balkêş, çîyo ecêb no yo ke sîyasetê kurdan zî tam goreyê waştena dewlete hereket keno. Eke ma helwêsta sîyasetê kurdan ya vera kurdkî de sey krîter hesab bikin, ma eşkenê bi rehetî vajin ke sîyasetê kurdan herçiqas hetê îdeolojîkî ra kurd bo zî pratîk de tirkbîyayîşê kurdan rê xebitîno. Sîyasetê kurdan derheqê kurdkî de dirîtîye keno, qet zî Samîmî nîyo.

Eke kurdî îmkanê tewr qijkek ke xizmetê kurdkî kenê ra îstîfade bikerê zaf baş beno. Mesela, hetanî serranê 1990an kurdkî qedexe bî, kes nêeşkayne bi kurdkî binuso yan biwano. La ê serran de Turgut Özalî seba ke kurdî bieşkê çapemnîye de bi kurdkî fealîyet bikerê, bihawayêko defakto yew nermayîye arde meydan. Naye ser o kurdan nê îmkanî ra zaf baş îstîfade kerd, dest pêkerd kovar û rojnameyî vetî.




Dima, radyo û televîzyonan dest bi weşana kurdkî kerd. Eynî wext de weşanxaneyê kurdkî abîyî. Bi sayeyê kovar, rojname, weşanxane, radyo û televîzyonan bi seyan nuştoxê kurdkî viraziyayî. Edebîyatê kurdkî (kurmanckî û kirdkî) dewrêko zerrnên ard meydan.

Dewleta tirkan demeyêk seba akerdişê kursanê kurdkî destur da. Naye ser o kursê kurdkî abîyî, netîceyê nê kursan de zî hezaran kesî wendiş û nuştişê kurdkî musayî. Eke ma bi hawayêko pêroyî bala xo bidin rewşa kurdkî ser, bi nê îmkananê zeîfan, nê da-vîst serranê peyênan de kurdkîya



**Sîyasetê kurdan derheqê kurdkî de dirîtîye keno. Eke ma helwêsta sîyasetê kurdan ya vera kurdkî de sey krîter hesab bikin, ma eşkenê bi rehetî vajin ke sîyasetê kurdan herçiqas hetê îdeolojîkî ra kurd bo zî pratîk de tirkbîyayîşê kurdan rê xebitîno.**

nuşteki zaf aver şîye.
Nika mekteban de îmkanê dersa weçînita ya musayîşê kurdkî zî bi no qayde seba kurdkî îmkanêko muhîm o. Mumkin o ke bi hezaran tutê ma mektebanê dewleta tirkan ke warê eslî yê asîmîlasyonî yê de wendiş û nuştişê ziwanê xo bimusê. Heto bîn ra, mumkin o ke kurdî bi nê firsendî berê îmkanê perwerdeyê kurdkî akerê, kurdkî bibo ziwanê resmî.
La çi heyf ke kurdî nê îmkanî ra îstîfade nêkenê. Sîyasetê kurdan binî de, pratîk de vera nê îmkanî muxalefet keno. Mi gore na neheqîyêka zaf pîl a ke kurdî bi destê xo bi xo kenê. Merdim raste vajo, sîyasetê kurdan neheqeîye keno. Hetêk ra nameyê "kurdîtîye" ser o propaganda keno, ci ra rant weno la hetêk ra xo rê temaşe keno ke çimeyê esîl yê kurdîtîye yanî "kurdkî" mîyan ra wedarîyo. Sîyasetê kurdan seba kurdkî senî propaganda keno yan zî hetanî nika se kerdo?
Gama ke payîzî mektebî dest pêkenê, sîyasetê kurdan yew beyanat dano çapemenîye, şarî ra teleb keno ke tutê înan di rojî mekteb boykot bikerê. Pratîk de des hezaran ra di kesî goş nêdanê nê boykotê bêcidîyetî. Ma vajin ke, bi hezaran kesî goş bidê nê waştişê sîyasetê kurdan û rojanê tewr verênan de, destpêkê perwerdeyê serre de, hema ke dersan dest pênêkerdo di rojî nêşê mekteb, boykot bikerê. Gelo yew havila xo bena, kurdkî rê yew faydeyê nê boykotê xaşilî esto?

# Vengo mird, rengo zelal: Narîna Min!

ÎLHAMÎ SERTKAYA

Seba ke ez derg nusena, xeylê wext o ke kilm nênusena. Zaf wendoxî, seba ke musê nuşteyê mi, seba ke wazenê nuşteyê mi biwanê, bi e-maîlan mi ra pers kenê ke ez qey nênusena.
È seba eleqedarê xo weş û war bê. Endî nika seba ke ez qey nênusena, zelal o. Ez û nênuştene! Zê adir û awe yê. Şima ca ra vênitê ya zî şahîd bîyê ke doman û maye bi waştena xo juminî de visî yê? Tenya merdene înan juminî ra visnena. Wexto ke qelema mi vindete, wexto ke mi dest nuştiş ra anto, bizanê ke ez endî merda. De o ke mi qalê babeta nuştişî kerdo, wendoxê delalal ra vajî, nika ez romano newe ser o xebetîna.
Handayê melumat bes o.
Ma sîyasetî zî caverdîme. Ez xo ra vana. Sîyaset bîyo ser û bin. Çîyê ke ez wanena, vînena, her kes zî waneno, vîneno. Luzum nîyo ke reyna qal bikerî. La tenya naye wazena vajî ke sîyaset de qet kes nêşikîya aqilê mi kîra bikero. Mi çî axa û paşayê sîyasetî dî! Mi çi deq û dolabê sîyasetî dî. Xo rê her kes bi aqilê xo! Ez bêrî babeta xo ser o.
Babeta mi Narîna Min a.
Nê rojanê peyênan de xebata xo ser o ke xebetîna, heto bîn ra zî mîkrofon goşê mi der o ke qet mi nîya nêkerdêne. La wexto ke ez adapte ra visîna, mîkrofon nan ro ya zî mi ke mabên da karê xo, ê mîkrofonî reyna kena goşê xo. Goşê mi de ju vengêde pirr û mird ruhê mi xemilneno. Kilamî, kam se vano vajo, çekuyan ra zêde miqamî muhîm ê. Miqam, veng ya weşê şima ra şono ya zî nêşono. Eke veng û miqam weşê şima ra şoro, bawer bikerê ke çekuyî zaf muhîm nîyê. La helbet ebe miqam û vengê weşî vate zî bimane û weş bo, rind o.
Vengo ke nê rojan ez ebe ey a qehremanê nê vengî, birêz Mucahît Goker o. Sayeya Zazakî.netî ra ez rastê ci ameya. Yanî ez bi xo nêgêra, Zazakî. netî mi rê ard. Seke ez goşdar bîya, ruhê mi bî şên, nê vengî mi berd welat û xortîya mi de çarna. Ge-ge şîya merg û wareyan, ge-ge şîya şewanê payîzî. Çi bizanî! Eşqo şikîyaye, şîira ke nême ra menda, qeher, qotik!




**Narîna Min!**
Tîja sodirî ya ke lêl û tarîyan ser o, tanya xo verda, çimê ke nêvînenê, kena zelal. Dot ra şî roja payîzî ya zelale verba to yena, to ra vana ke "Ma kotî de mend bîme? De bê! Ma çi ke nême de mendo, dewam bikîme!"
Ez verba ci şona, şona nêresena ci.
Ne ez resena ê rojanê payîzî, ne ê rojî resenê mi. Cixare zî koke ra şimena ha (şima meşimê, mi qerarê xo zî, zerarê xo zî dîyo)!
Ez vana tayê ke zamet mebo (ê sîyasetê ke bi tirkî nusînê), tayê mabên bidê, xo biaznê dêsê rengê xo, birêz Mucahîdî ra goşdar bê. Ti weş û war be birêz Mucahîd. Willayî na Narîna Min sayeya to de ge-ge mi bena wisar. Wisarê Dara Hênî, Karêrî, Çewligî... dime ra zî mi bena Dêrsim. Ez o ke bi fekê xo adiran şikna, xeman dirna.
Şima rê Narîna Min. Goşdar bê, ci ra beno ke şima zî hes kenê. Seke ju şîira mi de nusîyabî:
"Eke wext mend, eke zamet mebo, tayê zî mi ra hes bike"
Ma gereke qal bikîme ke vateyê na kilame birêz Mahmut Ayçîçekî nuşto. Helbet ey rê zî sipas kena.

# Bûrjûvazî ya kurd Kurdistaneke serbixwe naxwaze

**Nivîskar û lêkolînêr Tarık Ziya Ekinci projeya 'Tirkiyeyîbûn'ê wek kêfxweşiya bûrjûvayê bi nav kir û destnîşankir kû siyaseta ku li ser navê kurdên Bakûr tê meşandin her car bi bernameyek nû derdikeve pêşberî gel û biştî demekê wê li cih dihêle û berê xwe dide tiştekî nû. Li gor Ekinci pêwistî bi rexistineke ku hevparî û wekheviya tirk û kurdan bi hev re biparêze heye lê ev ne projeyên wek HDP'ê teng û li ser mihengên demî hatiye lênan in.**



BESÊ POLAT

Nivîskar Tarık Ziya Ekinci ku di derbarê dîrok û civaknasiya kurd-Kurdistanê de berhemên bi bandor nivîsîne û lêkolîn kirine di derhêqê mijara 'Tirkiyeyîbûnê' de bal kişand ser şîrikatiya alîgirên vê gotinê ya bi bûrjûvaziya kurd re û diyar kir ku bûrjûvazî ya kurd naxwaze ku Kurdistaneke serbixwe ava bibe. Ekîncî li ser mijarê bi hevala me re axivî.

**Ji demekê vir ve ye ku gotina 'Tirkiyeyîbûnê' di rojeva siyaseta kurdên Bakûr de ye. Ew berdêl û ked û hwd. ji bo vê bû, Tirkiyeyîbûn dê têra çareseriyekê bike?**

Me bi deh hezaran mirî li piş xwe hîşt. Gelek can û mal wenda bû. Tiştê hat jiyîn siyasetmedarê kurd anî vê astê, çareyek din tunebû. Riya xilasiyê tunebû. Wê demê xetere hebû. Careya yekem ku kurdan di nav çepên Tirkiyê de xwe bi rêxistin kirin got ku kurd xwe di nav vê tevgera siyasî de xwe bi rêxistin bikin. Ji ber ku divê me bi çepên tirk re bida zanîn ku divê kurd xwe bi rêve bibin. Wê demê gotina kurd xetere bû. Ev riya ji bo demokratbûna Tirkiyê bi çepgiran û di nav çepgiran bida zanîn ku kurd xwe bi rêve bibin. Di Partiya Karkerên Tirkiyê de me ev yek pêk anî. Dû re partî hat girtin, şert guherîn. Dema em di girtîgehê de bûn rewşenbîrên ciwan yên piştgirî didan me digotin, "divê kurd êdî cihê xwe bi rêxistin bikin." Piştî wê bi dehan rêxistinên serbixwe derketin. Ya ku karê legal dikir komeleya DHKD bû. Vana bi armanca Kurdistanek serbixwe xebat dikir. Tiştê ku îro tê axaftin min 35 sal berê digot. Derfet nîne ku kurd tena serê xwe demokeasiyê saz bikin. Li Tirkiyê tevgerek nû ya Tirkiyê ku; serdestiya hiqûqê hebandiye, ji mafê mirovan re rêz digre, di nav mirovan de cihêtî nake, ji her çand û olê re wekhev, newekhevbûna navbera herêma de ji holê rake ez bawerim ku pirsgirêka kurd jî çareser bike. Çareserkirina pirsgirêka kurd sazkirina demokrasiyê li Tirkiyayê ye. Di vê riyê de hin gav hatin avêtin. Vê carê tenê bi bizava çepgir re hevkarî tê kirin. Ez li vir tenê li ser çepgirên Tirkiyeyê nasekinim; hemû hêzên demokrasiyê yên Tirkiyê ango kesên pirsgirêka kurd hebandiye û ji her tiştê demokrasiyê bawer kiriye û tevgerek ku qadroyên di vê rêyê de xebat kirine komkiriye ser hev dibêm. Ev tevger di heman demê de dibe alternatîfa AKP'ê. Kurd bi tevgerek ku demokrasiya hevdem qebûl kiriye re dikarin hemû pirsgirêkên xwe çareser bikin. Li Tirkiyê sazûmanek wekhev dikare bê dayîn.




**"Tirkiyebûn" di hêla siyasî de çi dide kurdan?**

"Em Kurdistanek serbixwe avakin" Xwastekek cazîp e ji qadroyên ciwan re. Xweş jî tê. Ji min re jî xweş tê. Lê ev xwestak dikare pêk were? Li gorî tê dîtin bûrjûvaya kurd naxwaze dewletek kurd ava bibe. Bi salan li derve wan êş kişandin. Di dema Partiya Demokrat de zagona bi cîhbûna mecbûrî hat rakirin. Bûrjûvaya kurd vegeriya xaka xwe û fêmkirin bi Komara Tirkiyê re tekoşîn ne pêkan e û riya bi hev kirinê hilbijartin. Partiya Demokrat ji hêla bezirganî û çandiniyê de alîkariya axayan kir. Bezirganî û çandiniyê qapîtalîst derxistin holê. Ev çîna qapîtalîst bi çîna qapîtalîstên Tirkiyê re di nava hevkariyê de bûn. Wan zarokên xwe dan xwendin. Dema min dest pê kir li zanîngeha 50 kes hebû, piştî wê zêdetir kurd bûn. Van zarokan bi kurdî stran digotin, bi kurdî lîstik dileyîstin, şevên kurdan amade dikirin û bi riya vê tevgera kurd dest pê kir. Ev tevgera kurd bi bûyera 49'an bi dawî bû. Piştî pratîkên gelek tevgerên kurd ku nedihat hêvîkirin ku PKK wiha pêşkeve. Ew jî ji vana serbixwe xwe rêxistin kir û du rêbaz da pêşiya xwe; divê herkes tevlî me be, bê xwe em kesî qebûl nakin. Ya dûyem, erîşa Erûhê hat kirin. Dem dem erîşbirina qereqola û li Tirkiyê destpêkirina tevgerak gerilayî. Dema dest bi vê kirin ji gelên din jî alîkarî girtin. Tevgerek aboriya wê baş hat avakirin. Di vê pêvajoyê de 60 hezar kes mir. Ji van însanan 50-55 hezar ji wan kurd bûn. Dewletê ewana wek parsek û bêkêr nîşan da. Di demek kin de hêvî dikir ku xilas bibe. Pêşî bi tekoşînên leşkerî yên piçûk bawer dikir ku xilas bike. Ku ev nebû xetek ewlehiyê ava kir, gund xira kirin, gel ji cihê wan kir û pirê wan kuşt. Dû re kuştinên kiryarê wan ne diyar dan dest pêkirin. Kesên ku bavê xwe, birayê xwe wenda kir got ku min her tiştê xwe wenda kiriye û li hember dewletê derket.

Îro bûrjûvaya kurd baş xirap alîgirê girtina mafê netewa kurd e lê kes ne alîgirê dewleta serbixwe ya kurd e. Ku dewletek serbixwe çêbe ji dewleta Tirkiyê nikare gubre, ax, mekîne, qirediya çandiniyê bistîne. Ji ber vê çînek bûrjûva ku pêşenktî bike nîne. Avakirina dewleteke beyî piştgiriya bûrjûvayê nabe. Lê ger sibêroj li Iran, Iraq, Sûrî û Tirkiyê kurd yekbin dibe ku tiştek nû çêbe. Lê niha şert nîne. Şertên îro kurd neçar kirin ku di nav demoqrasiyê de mafê xwe bixwazin.

**Ku projeya 'Tirkiyeyîbûnê' pêk bê dê kurdên parçeyên din li derve namînin?**

Meseleya kurdên li cihên din cihê ye. Mesela li bakûrê Iraqê hêzên feodal hene. Li alîkî Berzanî, li alîkî, Talabanî û niha jî Goran ket nav wan. Ku DYA erê bike dewleta kurd ya serbixwe wê avabe. Wekî din niha xuyayê ku kurd naxwazin ji Sûriye jî cihê bibin.

**Tê gotin ku li Rojava şoreşek bi ser ketiye?**

Şoreşek çawa? Bala xwe bidinê, dibên em ji Sûriyeyê cihê nabin. Divê meriv bizanibe ku Rojava ji nişka ve derket. Lê polîtîqayek aqilane bi rêve dibin derneket. Bawerim ku PKK van tişta pêşniyarê wan dike. Lê bi Berzanî re bi hev nakin. Rêxistinîbûna kurda ji Esad jî alîkarî digre. Ne ew li hember Esad in ne jî Esad li hember wan e. Ez dixwazim tevgera kurd bi avayekî baş pêşkeve. Tirkiye meseleyek girîng e. Li Tirkiyê sazkirina demokrasiyê û tevgerek ku vê bi cih bike hewce ye. Ku tevgerek wiha derkeve dibê kurd jî alîkarî bidin wan. Kurd dikarin pêşengiya tevgerek wiha bikin.
HDP tevgerek pir teng e. Nikare serdestiya demokrasiyê saz bike. Dê wiha bê hêz bimîne. HDP hê çareseriyek bo pirsgirêka kurd nedaye pêşiya xwe. Her wiha Selahattin Demirtaş nexwast bibe namzed. Bo ku tirk û kurd bikaribin bi hev re bijîn sîstema ayaleta herî baş e. Mesela Kemal Burkay federasyonê dixwaze. Kurdên li Stenbolê, Îzmîrê dê wê çaxê çi bikin? Bo serxwebûnê jî heman tiştî difikirim.



**Ku hûn li projeya 'Tirkiyeyîbûnê' dinêrin hun çi dibînin?**

Tirkiyeyîbûn ji xwşiya bûrjûvaya kurd diçe. Projeyek hevpar bo kurda girîng e. Kurd çi bixwazin dibê bixin vê bernameyê. Ev tevger wê ya bibe serdest yan jî bibe endamê serdestiyê. BDP niha bi qasî 30 mebûsan diaxive, lê ku 200 heb hebûya zêdetir dê biaxiviya. Tezên ku avêtene holê ne pêkan in û ew jî nikarin wana pêk bînin. Tiştê ku dikin hêvîkirin e. Hikumet hin tiştên biçûk dide ku bingeha wê ya zagonî nîne. Ku hêza we mezin be hûn derkevin hember raya Tirkiyê wê mafê kurda qebûl bike.

**Erdoğan mafên kurdan wek xêra xwe dibîne**

Pêkan e ku Tirkiye kurda qebûl bike? Hê di wê astê de nîne û ev yên encax bi riya tekoşîna siyasî dibe. Divê hukumet vê yekê bide zanîn ku: "qasî we mafê kurda jî heye. Kurd bikaribin bi zimanê xwe perwerdahiyê bibînin û mafê wan heye." Îro tiştek dibê sibê tiştekî din. Divê rewşa Abdullah Öcalan bikeve zagonê. Pêvajoya li hev kirinê jî dibê bi avayekî zagonî bê çêkirin. Lê Recep Tayyip Erdoğan vana wek dayînên xwe dide nîşandan. Îro piraniya olperestan naxwazin ku kurd mafên xwe bistînin. Divê olperest jî bi kurda re li dijî kemalîsta şer bikirana lê wisa nekirin. Ku projeyek te tunebe tu nikarî di vê rê de bimeşî. Tiştê ku heta niha dikin xeyelî ye. Pêşî gotin ku xwaseriya demokratik, dû re ew jî hat girtin niha kes behsa wê nake. Dema bernameyek hat amadekirin divî henek dirêj bajo. Divê bi hêzên Tirkiyê yên demokrat re bibe. Divê programa eyaletan ji nîqaşan re vekirî be. Niha nizanim ku di hişê wan de çi heye. Divê programek ku hemû kurdên Tirkiyê bihesibîne bê afirandin. Ku hûn bi Tirkiye ve dimînin divê hûn him mafên kurda him mafên tirkan biparêzin. Hûnê çiqas wîlayeta bikaribin bistînin? Mesela Erziromê, nikarin bi destxin. Heta Diyarbekirê jî. Diyarbekirê ji alî şaredariyê ve dikarin bistînin lê ku dev ji serxwebûnê berdin gelê Amedê li pey wan nameşe. Program divê li Tirkiyê û dinê wek erênî bê qebûlkirin. Ji bo ku ez di nava lijneya şêwirê ya HDP'ê de cîh bigirim ji min rica kirin. Ne endam im lê di lijneya şêwrê de me. Niha dibêjin were. Ku ez herim wir hemû bernama wan xira dibe. Ev nayê hesabê min, çend hevalên min hene naxwazim wan xemgîn bikim. Her dem dibêjim ku me qadroyên marksîst ceriband. Hat û çû hewce nake ku em cardin biceribînin. Ku tu canê Ertuğrul Kürkçü bistînî ji marksîzmê venagere. Serokê EMEP'ê jî wisa ye. Tu bi vana nikarî herî cihekî. Niha ji bo BDP'ê qala partiya qadroyan dikin û dibêjin partiyek marksîst lenîst emê avabikin û li Tirkiyê şoreşê pêk bînin. Bi vî rengî li Tirkiyê tu nikarî gavekê jî pêş de herî. Me ceriband. Ez dibêjim pergela ayeleta bê parastin.

**Di pêşerojê de çi rojev li ber hikumeta Tirkiye û li ber kurda ye, ew dê çi biaxivin?**

Tiştekî ku li ser biaxivin tuneye. Bi navên cihê cihê projeyên wan hene. Xwe parastin, Xweseriya demokratîk û nizanim çi çi. Hemû ji piştî demekê tên ji bîrkirin. Her roj tavîzek tê dayîn û kes nizane ku dê ev rewş wê heta ku bimeşe. Lir rewşa niha xuyaye ku piştî demekê perwerdahiya bi zimanê zikmakî di rojevêkeve. Divê teqes li dibistanên dewletê bi kurdî perwerdahî dest pê bike û kurd jî bo vê giraniya xwe bidinê.



---



# Li Şemzînanê 'Rojên Pirtûkan'

Starta Rojên Pirtûkan a Colemêrgê ya berhemên kurd bi xwendevanan re li hev tîne li Şemzînan dest pê kir.
Rojên Pirtûkan a Colemêrgê ya ji aliyê Weşanên Sîtav û Şaxa KURDÎ-DER'ê ve tên organîzekirinên di navbera rojên 9-19 hezîranê de pêktê li Şemzînan dest pê kir. Di bernameyê de dê berhemên weşanxaneyên kurd weşandin bi xwendevanan re li hev bînin.
Ji bo bernameyê li ber Amîrtiya Zabitayê ya li Kolanan Komarê kon hate vedan û di standên hatin danîn de pirtûkên hatin çapkirin hatin pêşkêşkirin. Li hemberî fuara pirtûkan a ku yekemîn car li navçeyê hate vekirin eleqeyekî mezin çêbû. Serokê Rêxistina BDP'ê yê Şemzînan Davut Evîn, Hevşaredara Şemzînan Nahîde Yildiz, BDP, KURDÎ-DER, KCD û endamên meclîsa şaredariyê tevlî vekirina fuarê bûn. Nivîskar Qahir Bateyî têkildarî fuarê de agahî dan û diyar kir ku ji ber eleqeya gelê navçeyê keyfxweş in û dê bernameyên wisa bidomînin. Bateyî, anî ziman ku fuar dê 3 rojan li Şemzînan vekirî bimîne. Xwendekarê Zanîngehê Ferhat Ozdemîr jî diyar kir ku yekemîn care li navçeyê fuarek pirtûkan vedibe û wiha got: "Ez bang li weşanxaneyan dikim, bila xebat bi carekê sînor nemînin. Êdî em naxwazin pirtûkên xwe li bajarên dûr bigerin."
Di çarçoveya fuara pirtûkan de dê wê hin panel pêk bên.

# Divê fakulteyên ragihandînê yên bi kurdi vebin

BESÊ ZÎN

Piştî ku jansa nûçeyan ya Anadolu (AA) dest bi wêşana bi kurdî kir li Tirkiye rojnamegeriya bi kurdî jî dest pê bû ku di kulvareke din de bê nîqaşkirin. Di vê şîpê de ji aliyê Ajansa Anadolu'yê ve li Enqere'yê bi beşdariya Cîgirê Serokwezîr Bülent Arinç û çend wezîrên din yên Tirkiye û gelek akademisyen û rojnamegeran 'Komxebata Pirsgirêkên Nûçegihaniya Kurdî û Pêşniyazên Çareseriyê' hate li darxisti.
Di encamnameya Komxebata ku gelek mijarên di warê kurdû û rojnamegeriya kurdî de ji bo pêjeroja rojnamegeriya kurdî hin biryar hatin girtin û di axaftinên ku ji alî endamên hikumetê ve hatin kirin de jî piştgiriya çareserkirina pirsgirêkên vê mijarê hate nîşandan. Komxebat bi tevkariya Zanîngeha Artuklû û Zanîngeha Alparslan ya Mûşê pêk hat.
Di komxebata ku Rektorê Zanîngeha Alparslan ya Mûşê û Cîgirê Rektorê Zanîngeha Artuklu'yê û gelek akademisyenên li zanîngehên cûda jî beşdarbûn de biryarên wêk:
* Di nûçegihaniya kurdî de divê zimanekî sade û tê fehmkirin were bikaranîn. Bikaranîna bi vî awayî fehmkirina nûçeyê hêsan dike û têkiliya gel a bi ziman re xurt dike û hînkirinê hêsan dike. Di nûçeyan de divê zimanekî giran û akdemîk neyê bikaranîn, lewra ev fehmkirina nûçeyê dike zehmetiyê.
* Di nûçe û nivîsan de divê di hilbijartina peyvan de baldar bin, peyvên ku di nav gel de tên bikaranîn, heke ji zimanên din jî hatibin werin bikaranîn.
* Divê hevokên ku li meneya kurdî û hevoksaziya kurdî nayên û meneyê diguherînin neyên bikaranîn.
* Rojname û kovarên ku di destpêka vê sedsalê de hatine weşandin ji bo peydakirina peyvên pêwîst çavkanî ne. Yên ku bi nûçegihaniya kurdî re eleqedar dibin, divê ji van çavkaniyan sûd wergirin.
* Ji bo ziman feydeya herî mezin parastina dewletê ye. Heke ziman ji hêla dewletê ve neyê parastin bi pirsgirêkan re rû bi rû dimîne. Xebatên ku li TRT û AAyê tên kirin tenê mînak in û tenê perçeyekî vê kêmasiyê temam dikin. Ji bo vê jî divê di saziyên din ên dewletê de jî kurdî were bikaranîn. Diyanet TV û Tarim TV jî ji bo weşana kurdî bibin qad.
* Ji bo ku nûçegihaniya kurdî pêşve biçe divê sektora taybet jî berpirsyariyê bigre ser xwe. Dewlet jî dikare saziyên çapemeniyê yên taybet teşwîq bike û bibe xwediyê rolan.
* Di nûçegihaniya kurdî de ji bo kêmasî bên helkirin û kesên zana bên perwerdekirin û hildan, lazim e di bin banê zanîngehan de fakulteyên ragihandinê yên ku perwerdehiya bi kurdî didin teqez bên vekirin. Ji bo vê mijarê jî prosedorên fermî divê bên amadekirin û burokrasî jî vê xebatê hêsantir bike û piştgiriyê bidê.



**Ajansa dewletê ya fermî AA beriya demekê dest bi wêşana kurdî kir û nûçeghaniya kurdî derfet dît ku li qonaxên akademîk û yên fermî jî bê niqaşkirin, pêş ve birin. Di vê çarçoveyê de ji aliyê AA'yê ve 'Komxebata Pirsgirêkên Nûçegihaniya Kurdî û Pêşniyazên Çareseriyê' hate organîzekirin û ji bo çareserkirina pirsgirêkên li ber nuçegihaniya kurdî pêşniyar û nîqaş hatin kirin.**

* Ji bo zaravayê kurdî zazakî ya ku di nav nêzîkî 4 milyon kesî de tê axaftin ji xetereya jibîrkirinê derkeve divê teqez xebat bên kirin. Ji bo vê jî divê bernameyên perwerdehî, hîndekarî û weşanê bên amadekirin û bernameyên ku hene jî bên xurtkirin.
* Ev komxebat ji bo çareserkirina pirsgirêkên nûçegihaniya kurdî gaveke ewil e, divê dewama vê komxebatê hebe û komxebatên motanî vê bên lidarxistin. Ji bo ku li ser pirsgirêkan bipergal bê axaftin, pêşniyaz bên nirxandin û civak û saziyên pişeyê eleqeyê nişanî komxebatê bidin, divê di komxebatan de saziyên din jî beşdar bin û komxebat berfirehtir bibe. Hatin girtin de hat destnîşankirin ku derfetên dewletê ji bo vê qadê jî bêne bikaranîn.

### Divê di saziyên din yên dewletê de jî derfet bên vekirin

Mamosteyê Zanîngeha Alparslan ya Mûşê Ercan Çağlayan ku beşdarî komxebatê bibû di derbarê xebatê de agahî dan rojnameya me û bal kişand ser pirsgirêkên ziman û nûçegihaniya ku hê bi yek nêzikahiyê nikare xebat bike. Çağlayan kêmasiya ku zimanê kurdî hê standardize nebûye jî weke astengiyek li ber nûçegihaniya bi kurdî nîşan da û wiha dirêjî da axaftina xwe, "Organîzekirina komxebateke ji bo kurdî ku ji aliyê AA've bê organîzekirin helbet pir girîng û gavek bi qîmet e lê mixabin gavek dereng mayî ye. AA ya ku di 1920'an de bi hevkariya tirk, kurd, laz, çerkez, ereb û gelên din yên Anatoliya'yê hate avakirin piştî 1924'a rêgeheke tirkperwer û sekular danî ber xwe û bêyî tirkî navberek xist nav xwe û zimanîn din. Divê ev pêk hatin weke qencîxweziyê neyên pêşkêşkirin. Ev mafên ku sedsaleke hatine desteserkirin û niha ev maf tên dayîn. Di komxebatê de mertebeyên çapemeniya kurd, zayîna çapameniya kurd, zehmetiyên li hemberî wê, bi


Adem Balta

serdeçûnên di dema II. Abdulhamîd û avakirina komarê de, tevî hemû zordarî û astengiyan li ser piya mayîna çapemeniya kurd bi firehî hate nîqaşkirin. Bêyî vê kovar, rojname, radyo û televizyonên ku li derveyî tirkiye derçûne û bandora van a li pêş ve çûna rojnamegeriya kurdî hatin vekirin û derket holê ku bandora van a li ser pêşveçûna zimên mezin û girîng e. Xebatên saziyên wek AA û TRT'yê helbet girîng in lê divê di saziyên din yên dewletê de jî ji bo bi karanîna fonksiyonel a kurdî qad bêne vekirin. Ji bo ku nûçegihaniya kurdî pêş ve biçe divê sektora taybet jî bi binbarî nêzîkî mijarê bibe. Divê dewlet rolên teşviqkar ji bo sektorên taybet ku wêşana bi kurdî dikin bilîze. Ji ber ku kurdî zimanekî pir diyalekt e û standardize nebûye divê medya û çapemenî bi zimanekî hevpar tev bigere da ku fêmkirina di navbera diyalektan de jî pêş biçe. Di komxebatê de girîngiya vê mijarê jî hate nîqaşkirin. Her wekî din ji bo ku talûkeya têk çûyina ku zazakî rû bir û ye ji holê bê rakirin divê bi lezgînî proje û beranmeyên bi zazakî bêne organîzekirin û yên heyî bên piştevanîkirin. Divê di nûçegihaniya kurdî de zimanekî sade yê ku bi hêsanî bê fêmkirin bi kar bê. Ev yek tevî ku dê bibe têgihêştina mantiqa nûçeyan, ji bo ku girêdana di navbera gel û zimên de xurttir bibe jî girîng e. Divê ji hilbijartina pêyvên ku di nûçeyan de nêzikahî li ser hêsanî û fêmkirina bê zehmet be. Divê pêyv û gotinên ku gel hevnasê ye bêne hilbijartin û wekî din jî pêyvên zimanên biyanî ku di nava kurdî de bi cîh bûne ji bêne bi kar anîn."

### Divê sektora taybet bê teşwiqkirin

Cîgirê Edîtor yê Serwîsa Kurdî ya AA'yê Adem Balta jî bal kişand ser girîngiya weşana bi kurdî ya AA'yê û da zanîn ku divê ji bo pêş ve çûna nûçegihaniya kurdî sektora taybet li vê qadê dest bi veberhênaniyê bike û dewlet jî piştgiriya wan bike û her wekî din divê devlet parê ji îlanên fermî bide rojnameyen herêmî ku bi kurdî bikin jî.
Balta wiha dirêjî da axaftina xwe; Ji ber ku li Tirkiye yekem e, komxebat xwediyê taybetiyekê ye. Piştî vê xebatê dê sazî û kesên ku di warê nûçegihaniya kurdî de xabat dikin li ser kêmasiyên heyê bifikirin. Di vê çarçoveyê de me deriyekî nû vekir. Nûçegihaniya kurdî di gelek warên cû da de bi zehmetî û kemasiyan re mijûl dibe. Di warê zimên, warê nivîsîna nûçeyan û hiqûqî de gelek pirsgirêk li ber in. Niha pirsgirêkek mezin jî ev e ku nûçegihan û rojnamegerên ku bi kurdî bikarin bixebitin nîn in. Yên ku bi zimên baş zanin bi rojnamegeriyê nizanin, yên ku rojnameger in bi kurdî nizanin. Di warê mefhum û lênanê de jî pirsgirêk zêde ne. Meseleya nûçegihaniya kurdî mijarek wihaye ku divê tu ne teslîmî zamanzanakî ne jî teslîmî rojnamevanakî bikî. Dibe ku hun baş bi zimanekî bizanin lê dema we rojnamgerî nizanî nabe. Kêmasiya mezin ev e. Divê sektora taybet bê teşwîqkirin da ku sazî û komên medya ya bi kurdî bên avakarin. Li bajarên cûda rojname derdikevin û ew bi pereyên ku ji îlanên fermî distînin têdikoşin. Divê ji vê par ji rojnameyên ku bi kurdî wêşanê bikin re jî bê veqetandin. Niha serwîsa me zêdetir bi wergerê dewam dike lê em nûçeyan tenê wernagerînin. Em nûçeyê ji nû ve lê dinin. Ji ber ku derfetên dewletê em dikarin bi kar bînin, gihêştina çavkanî û nûçeyan ne zehmet e. Di pêşerojê de neçar e ku rojnamegerî û nûçegihaniya kurdî êdî li asteke din bê nîqaşkirin."

# Hêviya bîrnebûnê û kurdên Lubnanê!


AZİZ TEKİN

Dema ku mefhûm a ‘Kurdistan’ bi ser zimanekî ket, di heman kêliyê de 4 parçebûn jî bi hişên kesê ku xwediyê wî zimanî ye de diherike. Welatê ku ji aliyê 4 dûgerên dakirer ve hatî ji hevkirin. Lê di vir de tiştekî ne ayan heye ku, dibe ku erdnîgar 4 parçebe, lê belê her parçeyek jî bû bûye çendên din di qonaxa kurdbûnê de. Bo mînak, Qafqasan, Misir, heya ku bigihêje Sûdan û va ye Lubnan ku kurdên xemdar lê ne. Di encamên sedemên cûda cûda de her car malbatek, komek, eşîrek an jî komek ji kurdên ku ji welêt qetiyane xwe spartine welatên dûr û nebihîstî. Ji Xûresanê bigre hetanî Qazakîstanê, ji Qanada’yê bigre hetanî Ewûstirya’yê, ji Elmanya’yê bigre hatanî Sûdanê, kurdên koçber qeder lê niştecî bûne. Ev belavbûn li her welatekî bi rengê encamên li gor xwe derdikeve pêşberî mirov. Li aliyekî cîhanê bîrkirina kurdayetiyê, li aleyekî din kurdbûyîneke ji hemû cîhanê re girtî, li aliyekî din entegrebûna wê derê û li derina jî entegrebûna tevî reng û dengê kurdayetiyê. Wek kurdên ku li Lûbnanê dijî.

Piştî ku li Başûr hin derfetên otonom derketin û mafhûm a ‘Kurdistan’ê li cîhanê bêhtir hat bihîstin û bêyî wê jî di warê ragihandin û enformebûnê de kurd jî gihêştin çaxa înternetê, ev kurdên ku wek noka li ser êgir peqiyayî li cîhanê belav bûne, denge xwe çexî hev kirin û niha hewl didin da ku denge hev seh bikin. Çêdibe ku hewildana di vê çarçoveyê de ya herî mezin jî meriv bike para kurdên Lubnanê. Ji ber ku piştû van pêkanînên ku çêbûne ew jî ketina nava kelecan, coş û bi hêvîbûneke ji bîrnebûnê. Taybetiya Kurdên Lûbnanê ev e ku di warê kurdû û çandê de jîr in û entegrebûna bi cîhanê re ji bo xwe zivirandine dewlemendiyekê.

**Bi cîhbûna kurdan li Lubnanê**

Piştî 1171’an dewleta kurd ya Eyûbiyan li Misrê hat avakirin bi malbata kesên rêvebir re malbatên kurd yên din jî çûn Misirê, Lubnanê û welatên din yên ereban. Piraniya malbatan ku di rêveberiya dewleta Eyûbiyan de cih girtibûn, li van deran bi cih bûn. Cûyîna kurda ya Lubnanê herî sîstematîk di serdema 17. de ye. Piştî xirabûna pergela dewleta Osmaniyan li Sûrî, Kurdistan, Anatoliyê serhildanên cûr bi cûr destpêkirin. Ji van serhildanan yek jî ya eşîra Canpoladan e ku bi salan berdewamkiriye. Piştî serhildanê; Sûrî, Çiyayê Kurmanc û derdora wê ket destê Canpoladan. Di 1607'an de Canpolada di şerê bi Osmaniyan re têk çû û warê di destê wan de bû ji destê wan derket. Piştî wendakirina şer eşîra Canpoladiyan hate belavkirin. Hin malbatên Canpoladiyan şandin Kurdistana Rojhilat bajarê Zencan û Halhalê, hin malbat kişiyan Çiyayê Kurmanc û hin malbat jî ber bi Lubnanê ve reviyan û li wir bi cih bûn.

**Navenda rewşenbîriya Kurd: Lubnan**

Koça duyem ya kurdan a berv bi Lubnanê ve di demên dawî ya Osmaniyan de û piştî avabûna komara Tirkiyê yebû. Dema Îtîhat û Terakî li rêveberiya Osmaniyan de bûn serdest wekê hemû miletên din kurd jî li hember fêkrên wan yên nîjanperest ketin hewldanan. Bi hezaran rewşenbîrên kurd li hember zilm û zordariyê berê xwe dan welatên Ewrûpayê, Misir, Sûrî û Lûbnanê. Çûyîna rewşenbîrên kurd ber bi van welatan ve hetanî bi dawîbûna serhildanên kurda li bakûr dewam kir. Ji van rewşenbîran Celadet Alî, Kamûran Alî Bedirxan, Hemzeyê Mûksê, Cegerxwîn, Cemîlpaşazadeyê Ekrem û Qadrî, Osman Sebrî û bi dehan kesên din li Sûrî û Lubnanê xebatên xwe berdewam kirin. Di sala 1940'an de rodyoyekî kurdî ku heftê du seet li Bêyrûdê weşanê dike hat destpêkirin û hetanî dawiya şerê duyem yê cihanê berdewam kir. Kamûran Alî Bedirxan di sala 1943'an de li Bêyrûdê rojnama Roja Nû û Stêr derxist. Di sala 1963'an de bi navê Rastî kovarek tê çapkirin. Dû re kovara Berbang tê weşandin. Di 1970'an de kovara Dengê Kurd di sala 1975'an de jî kovara Rêber derdikeve. Lubnan hetanî salên 1980 bû navendek û sitargehek rewşenbîrên kurd.

**Wek karker xebata kurda**

Piştî şerê navxweyî li Lubnanê qada avahîsaziyê li Lubnanê pêşket, bi vê pêdiviyê bi hezaran karkerên kurd û ji miletê din çûn Lubnanê. Li gor lêkolînvanan heta çend salên dawî li Lubanê di navbera 75.000- 100.000'î de kurd hebû. Lê niha piraniya vana yan vegeriyan yan jî derbasî Ewrûpayê bûn. Li gor îstatîstîkên çend sal berê li ser kurdên Lubnanê hatî çêkirin û di hejmara 2199'an a Kurdistanî Nwe(16'ê Temûza 2000'î) de rojnamevan Salar Yasîn belavkiribû de; kurdên ku li Lubnanê dijîn ji % 54’ê wan xwe wek kurdên Lubnanê didin naskirin. ji % 20 jî xwe tenê wekê kurd dihesibînin. Di heman lêkolînê de dê ger Kurdistaneke azad çêbe ji vana % 57 naxwazin ji %15 dixwazin vegerin Kurdistanê. Tişta balkêş ewe ku di vê lêkolînê de asta bikaranîna zimanê kurdî bilind e. Ji beşdervanan % 47 di mala xwe de tenê kurdî bikar tînin, % 42 kurdî erebî, % 11 tenê erebî bikar tînin. Herî pêşî di sala 1950 de hin kurd dibin hemwelatiyê Lubnanê û di hilbijartinan de deng bi kar anîn, piştî wê dewr bi dewr kurd bûn hemwelatî.

**Saziyek kurda: Civata Kurdên Libnanê ya Qanciyê**

Piştî bi cîhbûnê kurdan li Libnanê sazî û dezgehên xwe jî avakirin. Ji wan saziyan yek jî Civata Kurdê Libnanê ya Qanciyê ye ku di sala 1963'an de hate avakirin ku niha serokatiya wê Behyeddîn Hesen dike. Endema Civatê Helîme Îbrehîm armancên Civatê bi me da zanîn ku: "Xurtkirina têkilî û pêwendiyên di nav xortên kurd yên li Libnanê, belavkirina xizmeta civakî û ya qenciyê, belavkirina xwendin û rewşenbîriyê di nav kurdên Libnanê de." ye. Îbrehîm di dewama axaftinê, "Saziya me serbixwe ye û hatiyên me aboneyên endametiyê, alîkariyên hukumetê û pêkanîna ahengan e." Îbrehîm di derbarê bi cihbûna kurdan de wiha domkir, “Kurd li hemu bajarên Libnanê belav bûne lê piraniya wan li Beyrudê dimînin li taxên Besta Tehta, Zikak Blat , Zerîf u Eyn Mireysê. Ji kurdan piranî di karên avahîsazî, di zeviyên sebze û meyweyan de û karên hemaltiyê dikin." Li hember van bajaran Trablûs, Sîde, Tyre û Baal Bekê jî hejmarek zêde kurd dijîn.


Rêvebirên Civata Kurdên Libnanê ya Qanciyê




**Berê xwe bidin kurdên Lubnanê**

Ji ber ku piraniya kurdên Lubnanê bi kurdî nizanin rêveberê Civatê hewl didin ku dibistanek bi kurdî li Lubnanê vekin. Bi vê hincetê çend caran hewl dan ku alîkarî ji hukumeta herêmê Kurdistanê bistînin. Îbrehîm derbarê vê hewldana Civatê de got ku: "Ji ber ku piraniya kurdên Libnanê bi kurdî nizanin, em du carî çûn Kurdistanê bi daxwaza vekirina dibistaneke kurdî li Libnanê, lê me tu sûd wernegirt." Mihemed gazinên xwe ji kurdan û rêveberiya Kurdistanê dike û waha bang li wan dike: "Em li vir bi rêya we re dîsa dengê xwe bilind dikin bo bighê xwediyên biryarê li Kurdistanê: Kurdên Libnanê ber bi windabunê ve diçin, berê xwe bidin wan."

**Rewşa koçberên Rojava li Lubnanê**

Piştî berdewamiya çar salan şerê Sûrî 2.834.317 kes koçberê dervayî Sûriyê bûn, ji vana 1.087.814 kes koçberî Lubnanê bûn. Di nav van koçberan de hejmarek ber bi çav ji kurdên Rojava heye. Van koçberên Rojava di karên zor yê navenda Beyrûdê de dixebitin. Îbrehîm derbarê van koçberan de dibê ku: " Ji ber ku hikumeta Lubnanê sistemek bo alîkariya koçberên Sûrî ava nekirye, Civat jî nikare bi tena xwe vî barî giran hilgire. Tenê alîkariya wan bi dana cil û berg û pêdiviyên malê dike. Hinek din jî alîkariya dibistanî stendine." Herî dawî li taxek bi navê Burc Hamûd ya Beyrûdê di navbera ermenî û kurdên ji Rojava koçber bûne de tevliheviyek derket û piştî wê tevliheviyê çend kes ji herdû aliyan de birîndar bûn.

# Rêçên Îskenderê Mezin di bin avê de dimîne!





**BÊZAR BÊWAR**

Bendava ku wê li Cizîra Şirnexê bê çêkirin û projeya wê amade ye dê bibe sedema parçeyekî xwezayê yê dewlemend û binavbûna warên dîrokî ku di dîroka Kurdistanê de xwediyê agahdarkirin û danasînên girîng in. Yek ji van cihan Gewiya Qesrîkê ye ku ji niha bigire heya sefera Iskenderê Mezin di dîroka Kurdistanê de xwedî taybetiyekê ye.
Li Cizîrê ji aliyê Karên Dewletê yên Avê ve (DSÎ) projeya bendav û HES'ê li ser Çemê Dîjleyê dê bê çêkirin ku cihê xwezeyeke dewlemend û ji hiyeroglif û motîfên dîrokî bi xeml e. Gewiya Qesrîkê, Pira Han Mahmût Xan, Pira Bakartalê û gelek cihên dîn ên dîrokî wê din avê de bimînin.
Bendav a ku wê li 7 kîlometre dûrî Cizîrê bê çêkirin di cihekî stratejîk yê dî navbera çiyayên Gabar, Cûdî û Çiyayê Dêrê de bê çêkirin di çarçoveya Projeya Başûr Rojhilat (GAP) de beriya demek dirêj di rojeva devletê de bû.
Proje ya ku bi armanca elektrîk jê bê girtin li ser 121 hezar hektar erd dest pê bike bi bihayê 350 milyon dolar wê bigihêje asta dawî û her wiha înşaata proje di meha hezîranê de dest pê dike. Înşaata ku li gor pîvanên projeye dê di 3 sal nîvan de bi dawî bibe ji aliyê DSÎ'ê ve hate îhalekirin wê 49 salan ji aliyê Aydin Enerji Üretim AŞ'yê ve bê bi karanîn. Di dawiya 49 salan de jî dê 3 milyar dolar kar di kîsê dewletê de li hev kom bibe.
Projeya ku mixabin tenê ji aliyê pere û karê ku dewlet jê bigire tê şirovekirin û nîqaşkirin wê zirarek mezin bide xwezeya Kurdistanê û bi sedan cihên dîrokî jî di bin avê de dihêle. Ji van cihê herî girîng Gewiya Qesrikê ye ku ji salên dawî bigirê heta sefera Îskenderê Mezin di dîroka Kurdistanê de xwedî taybetiyêkê ye.

Wekî din li rojavayê gewiyê di nav çiyayan de qaneleke avê heye û hinek bermayiyên aşên avê hene, li her du aliyên gewiyê qelhe hene û tê gotin ayîdî kurdan in. Qad ji berê heye niha weke cihê bêhdanê û mesîreyê tê bikaranîn.



**Riya Îskenderê Mezin û Ksenofon**

Gewiya Qesrîkê di heman demê de herêma ewlehiyê ya Bakur û Başurê Mezopotamyayê bû û riya qiralan û deriyê gumrukê yê stratejîk bû. Gewiya di bin gefan de gelê herêmê diltirs dike. Gewî di heman demê de malîvaniya seferên Ksenofon û Îskenderê Mezin kiriye. Pira Xan Mahmud jî piştî mirov ji Gewiya Qesrîkê derbas dibe 200 metre dikeve bakurê rê û li ser Çemê Hoşalê hatiye çêkirin. Pir ji sê kemerên cudan pêk tê. Ji ber ku pir dê di bin avê de bimîne rastî bertekên gel tê. Ligel Pira Xan Mahmut dê Pira Bakartalê ya di ketina Gewiya Qesrîkê de dimîne jî wê di bin ava bendavê de bimîne. Li Gewiya Qesrîkê li kêleka rêya ber bi Şirnexê ve li ser kendalên doralî belkirinû motîfên dîrokî bala meriv dikêşe ku di salên 90'î de ji aliyê leşkerên tirkan ve jî hatibû gulebarankirin. Li heman qadê qenalek avê ku di nava kendalan de hatiye vekirin jî ji aliyê danasîna dîrokê ve girîng e. Her wekî din bajaroka Qesrîkê jî wê di bin avê de bimîne. Li herêma bendavê gelek cisnên ajalan jî wê di bin bandora vê yekê de bimînin.
Ji dewlemendiyên cihê ku di bin avê de bimîne jî Risor e. Weke tê zanîn di bingeha çem de robereke ku di mehên biharê de bi ser erdê dikeve heye û piştre jî wenda dibe lê ji bo gêşbûna şînahiya herêmê û dewlemendiya xwezaya wê derê xwedî hêzeke girîng e. Bêyî Bendava Cizîrê li herêma Şirnexê bi navên Musatepe, Çetintepe, Kavşaktepe, Uludere-Balli, Şirnex û Silopî 6 bendavên din jî hatine dest pê kirin û înşaata wan didome.

**Hê tu xebatên me nîn in**

Parlementerê HDP'ê yê Şirnexê Faysal Sariyildiz destnîşankir ku wek partî û tevger li hember avakirina Bendava Cizîrê hê tu xebatên wan ên diyarbûyî tune ne û ji ber ku rojev ji mijarên din yên girîng tije ye neketine nava hewildanekê. Sariyildiz ji bo giringiya ku bendav xwezê û dîrokê bin av dike bal kişand bendavên din ku li Kurdistanê hatine çêkirin. Sariyildiz wiha pê de çû, "Xebera me jê he ye ku ev bendav dê li qadeke girîn û stratejîk bê çêkirin û xebat hatine dest pêkirin. Diyar bû ku di meha gulanê de dest pê bike û me jî ji bo vê xwe amade dikir lê pişt re des pê kirin hate taloqkirin. Tevî ku me hê tu xebat nedane dest pêkirin emê di pêşerojê de vê mijarê dêynin ber xwe. Niha wekî hun jî dizanin li Kurdistanê gelek mijarên lezgîn diqewimin û em bi hevalên din ve neçar in ku bêhtir li ser van bisekinin. Lê ew nayê mana ku emê bêdeng bimînin li hemberî bendavê. Ev bendav cihekî li cihên kurdistanê yên herî bi qîmet têk dibe. Projeya Bendavan ji xwe diyar e ku li ser kîjan miheng û bingehan têne avakirin. Emê hewil bidin ku bi xebatên xwe rê li van pêkanînan bigirin."

# Çalên Licê rojeva Tirkiyê dagirt

**BasNûçe**

Li tirkiye zêdetirî 20 rojane ku li Licê ya Amedê bi hinceta çêkirina kelehkolan çalakî tên li darxistin û di dawiyê de piştî midexaleya leşkeran du welatî hatin kuştin. Piştî vê li gelek deverên Kurdistan û Tirkiye xwpêşandanên ku dizivirin cihê pêvçûnan dest pê bûn û tevî banga Ocalan hê jî çalakî didomin. Her çiqas di navbera PKK'ê û hukumetê de hevdîtnên pêvajoya aştiyê berdewam be jî ji hêlek din ve jî hukumet lezê dide çêkirina qelehkol, bendav û wargehên leşkerî. Ev jî dibe sedem ku kesên li wan herêman dijîn nerazîbûnên xwe nîşan bidin. Bi vê armancê li gelek deverên Kurdistanê bo şermezarkirina çêkirina qelehqolên nû çalakiyên rê birînê hatin dest pê kirin. Çalakiya rê birînê ya herî demdirêj li Licê bû. Li Licê çalakiya di 24 Gulanê de destpêkir hê jê berdewam dike. Piştî ku li Licê çalakî destpêkir li navçeya Gimgima ya Mûşê û li Kanîreş Çewligê jî çalakiyên rê birînê hatin destpêkirin.

**Li Licê çi qewimî**

Çalakiya rê birînê ku bo şermezarkirina çêkirina kelehqolan li Licê 24 Gulanê destpêkir. Çalakvanan rêya di navbera Diyarbekir û Çewlêgî ku di Licê de derbas dibe bi kolandina çelan birîn. Piştî rê birînê hêzên dewletê yên leşkerî çend caran hewl dan ku mudaxilê gundiyên ku rê girtibûn bikin lê li hemberber berxwedanê paş ve kişiyan. Ev rews hetanî êvara 7 Hezîranê ku dewletê bi guleyan erîş bike dewam kir. Di encama erîşê de du kesên bi navê Ramazan Baran û Bakî Akdemîr jiyana xwe ji dest dan û bi dehan kes jî birîndar bûn. Abdullah Öcalan di hevdîtina xwe ya heyeta HDP'ê re derbarê bûyerên Licê de got ku: "Helwesta AKP'ê bi ti awayî ne guherî; kalekol, veguhastina leşkerî, zextan dewam kirin; gel derfet nedît ku nerazîbûna xwe ya demokratîk nîşan bide. Ji ber ku em hatine pêvajoyeke hesas, em hatine pêvajoya ku nexşeyên rê bên derxistin. Divê rewşê de divê her kes bi berprisyarî rabin." Çav lir ê bû ku piştî banga Ocalan çalakî bi dawî bibin lê hê jî berdewam a çalakiyan e.



**Daxistina ala tirk**

Bi kuştinên li Licê re li gelek deveran çalakî hatin li darxistin. Di çalakiya Diyarbekirê de kesek rûyê wî girtî derbasî baxçeyê 2'yemîn Fermandariya Hêzên Hewayî ya Amedê bû û ala tirk ya li wê derê hatiye daliqandin ji dîrega wê daxist xwarê. Bi vî bûyerê re serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayip Erdoğan ji çapameniyê re got ku "Zarok be jî me eleqeder nake. Eger ev zarok cesareta daxistina ala me dide nîşandan, çi pêwîst be wê bê kirin. Zarok be jî em li hemberî vê bêdeng namînin." Bi vî daxwiyaniya Erdoğan li gelek deveran çalakiyên alê ku erîşê kurda dikirin hat li darxistin. KCK'ê jî bi daxwiyaniyek da zanîn ku: "Tu pêwendiyên me bi daxistina alê re tune." Piştî bûyerê 5 kes hatin binçavkirin. Piştî vê li çar aliyên Tirkiye nijadperest daketin qada û li gerek deran êriş li hemberî kurdan pêk anîn.

**Rojeva Tirkiyê Lice ye**

Wezareta Karê Hundir der barê bûyeran ku li Licê pêk hatin de mufetiş peywirdar kir. Di daxuyaniyê de hat gotin ku ji bo lêkolînkirina bûyeran mufetiş hatine peywirdarkirin. Koma HDP'ê ya ku piştî li Lîceyê 2 welatî ji aliyê leşkeran ve hatin qetilkirin biryara civînê li Lîcêyê pêk bînin girt û civînê li cihê kesên ku hatin kuştin dar xistin. Li navçeya Cizîrê ya Şirnexê jî zarokêk bi navê Fûrkan Avşar ê 6 salî ku di protestoya bûyera Licê de ji çavê xwe birîndar bûbû di Nexweşxaneya Zanîngeha Dîcleyê hat emeliyatkirin. Xetereya jiyana Fûrkan tune ye, lê îhtîmale ku çavê xwe wenda bike. Di 10 ezîranê de zarokekî bi navê Mahsun Balık li Şirnexê bi qapsûlê giran birîndar bû. Şermezarkirina kuştinên Licê li gundê Serde ya girêdayê Hênê çalakî hat kirin. Piştî çalakiyê leşkera erîşê girseyê kombûye kir û bombeyê qazê avêtin. Di encama bombeyên qazê de bi hezaran donim zeviyên genim şewitîn. Çalakvanên ku rêya Kanîreş û Gimgimê girtibûn rastê midaxileya leşkerî hatin. Êvara 9'ê mehê li Sêrtê ji bo şermezarkirina pêkhatina li Licê çalakiyek li dar xist polîsan bi bombeyê gazê erîşî çalakvanan kir. Kesekî bi navê Ramazan Ertaş (80 ) ku nexweşiya astim pêre hebû, nefes negirt û wefat kir. Rêxistina Efûyê ya Navneteweyî der barê bûyerên ku li Licê pêk hatin de banga lêpirsîna serbixwe û bê alî kir. Bêyî çalakiya ku li Licê didome li Colemêrg, Wan, Êlih, Sêrt, Agirî, Şirnex Mêrdîn, Bedlîs, Stenbol, Qers, Semsûr, Riha û gelek navçeyan jî ji bo piştgiriya çalakiya Licê û şermezarkirina kuştina du welatiyan çalakî hatin li darxistin û li cihinan hê jî berdewam e.

**Amed**



Di çalakiyên ku bêyî Licê li navenda Amedê hatin organîzekirin de li gelek kolanan pêvçûn derket û polîsan bi bombeyên gazê êrîşî çalakvanan kir. Xwepêşandana ciwanan ya bi tevir û bêran balkêş bû.



Herdû welatiyên ku li Lîce di êrîşa leşkeran de jiyana xwe ji dest dan li navendê bi girseyî hatin veşartin. Piştî merasîma definkirinê jî dîsa polîsan bi ava tazyîkê û gazên bombeyî êrîşî çalakvanan kir. Wêne: Sertaç Kayar

# Tirkiye û Iran: Dostên bê dil





DÊRSİM OREMAR

Di 18 salên borî de û piştî sefera Haşimî Refsencanî di sala 1996 ê de cara yekeme ku serokkomarê Iranê bi awayekî fermî bo Tirkiyê tê vexwendin. Di salên borî de Mehmûd Ehmedî Nijad çend caran serdana Tirkiyê kiribû, lê tu carî bi awayekî fermî nehate vexwendin û tenê ji bo beşdariya di konferans û civînên navnetewî li Stebolê bû.

Du welatên girîng û xwedî bandor li rojhilata navîn û du welatên bi nêrînên cuda ji îslamê ku bi dirêjahiya dîrokê bi hevre li ser bandora xwe li welatên cIran, Asya navîn û Qefqazê di hevrikiyê dene.

Serdana Hesen Rûhanî bo Tirkiyê ji ber rewşa aloz û guhertinên li rojhilata navîn bû mijara germ a pIraniya medyayên cîhanê.

Weletên ku hem şirîkên ticarî ne û hem reqîbên siyasî, lê sedemên hevkariya herdu welatan bi hevre gelek in û tevî hemû nakokiyan şîrîkatiya wan a ticarî berçavtire û herdu alî jî dixwazin peywendiyên wan yên aborî weke xwe bimînin.

Di roja duyemîn a sefera Rûhanî bo Tirkiyê, 10 senedên hevkariyê di warên cuda de di navebra herdu welatan de hatine mor kirin, herdu welat dixwazin astê peywendiyên aborî yên xwe di salekî de bigehînin asta 30 mîliyar dolaran. Di rewşekî de ku astê alîgirên barziganiya herdu welatan di sala 2013ê de 5/13 mîlyar dolar bû.

Rûhanî beriya çûna Tirkiyê ji peyamnêran re gotibû ku civîna wan bi rayedarên Tirk re tenê derbarê aboriya herdu welatan de nîne û mijarên ku ew weke teror, şerê bi tundrewiyê û firqe gerayiyê li herêmê bi nav dikin e jî.

Serokkomarê Tikiyê jî derbarê sefera Rûhanî bo Tirkiyê ragehand, bo cara yekem civîna şêwira taybet a hevkariyên Stratêjîk di navbera Iran û Tirkiyê de dê bê lidar xistin û serokatiya vê civînê serokwezîrê Tirkiyê, Receb Teyib Erdogan û Hesen Rûhanî dê bikin.

Bêguman Kurd û bi taybet Rojavayê Kurdistanê jî yek ji mijarên serekî yên vê serdanê ne ku ji bo herdu welatan bûye sedema serêşiyê.

Tevî ku li ser krîza Sûriyê û guhertina nexşeya rojhelata navîn a nû, navbera Iran û Tirkiyê asayî nîne û rayedarên herdu welatan carna aşkera û carna jî bi veşartî daxuyaniyên tund li dijî hev dane. Dewleta Iranê dijberên Beşar Esad weke terorîst bi nav dike û yek ji hevpeyman û piştgîrên rejîma Esad e. Dewleta Tirk jî di bereya muxalifên Esad de cîh digre.

Weke diyar carê Iran li Sûriye bi ser ketiye û Tirkiyê gav paşde avêtine.

**Roja duşemiya hefteya borî Serokkomarê Iranê Hesen Rûhanî piştî 18 salan bi awayekî fermî ji aliyê hevtayê xwe Ebdulah Gul, bo Tirkiyê hate vexwendin.**



**Gora Atatürk, hêla sor a rayedarên Iranî**

Li gor pîvan û teşrîfatên Tirkiyê rayedarên welatên mêvan di serdanên xwe de lazime serdana gora Atatürk bikin. Lê gelek rayedarên komara îslamî ya Iranê Riza şah û Atatürk weke yek dibînin ku li dijî baweriyên îslamê şer kirine. Lê Rûhanî jî weke serokkomar û rayedarên berê yên welatê xwe, di sefera Tirkiyê de serdana gora Atatürk nake. Serokkomarê berê yê Iranê, Ekber Haşimî Refsencanî jî di sala 1996ê de serdana gora Atatürk nekiribû.

Neçûna Rûhanî bo ser gora Atatürk bûye sedema dilgIranî ya gelek Tirkan.

Lê bi baweriya çavdêrên siyasî cudatiya nêrîn û siyaseta herdu welatan derbarê krîza Sûriyê, nikare bandorê li ser peywendiyên wan yên aborî çêbike, ji ber ku Tirkiyê pêwîstî bi petrol û gaza Iranê heye û Iran jî ji ber ambargoya navnetewî bo ser welatê xwe gelek muhtacî dolarên petrolê ye.

# Kurd û înternet!



**Qada înternetê êdî wek parzemîna 8. li ser rû yê cîhanê rû daye. Bi milyeran kes kêlî bi kêlî li ser înternetê di nava danûstendina ragihandin û enformasyonê de ne. Êdî înternet û bikaranîna wê hatiye asteke wisa ku jiyana rastî û ya sanal ketiye nav hev.**

AZİZ TEKİN

Her çiqas kurd zêde di qada înternetê de nûbin û zêde bandorek wan tunebe jî nû nû bi bernameyên resen û serkeftî qada înternetê bo xwe fireh dikin. Bernameya lêgerînê egerîn û ferhenga înterkatîf Tirşikê di demên dawî de xwe gihandin asteke ku di nava qadên înternetê yên cîhanê de bikaribin cîh bigirin.
Li dinyayê bikaranîna înternetê êdî gihêştiye qonaxeke ku rastî û sanal devlî hev bûye. Di wê astê de helbet kurd jî dibûya li ser înternetê ku êdî ew jî 'parzemîneke' cihê xwe bigirta. Helbet hin xebat û têkoşînên li ser nete jî hene lê hê jî ne li qonaxeke kut ê xwestin e. Beriya demekê bi kar û xebata komek ciwan kurdî wek vebijarkek zimên di facebookê de cihê xwe girt. Pêşketina kurd û kurdî ya li ser înternetê ya herî balkêş ev e. Wekî din jî di demên dawî de gelek pêşketin û xebat hene.
Piştî bikaranîna alavên teknolojîk, dinya wek gundekî biçûk tê bi navkirin û navê serdemê wek serdema ragihandinê tê gotin. Rêjeya bikaranerê înternetê rewşê bandora wê bi zelalî radixe ber çavan. Li tevayê dinyayê de 2.7 milyar kes înternetê bi kar tîne, ev li gor serjimara dinyayê ji sedî 39'e. Bikaranîna înternetê di sala dawî de ji sedî 208 zêde bûye. Ji van bikaranêran ji sedî 35 li parzemîna Asyayê ye, ji sedî 28 li parzemîna Ewrûpayê ye, ji sedî 20 jî li Emrîkaya Bakûr e. Bi 211 milyon bikaranêrê xwe Emrîka welatê ku herî zêde înternetê bikar tîne ye, di rêza dûyemînde bi 137 milyon bikaranêrê xwe Çîn heye. Di înternetê de zimanê herî belavbûyî îngîlîzî ye, li pey wî çînî, espanyolî tê.

**Di înternetê de rewşa kurda**
Her çiqas rêjeya bikaranîna înternetê di nav kurdan de ne ewqas zêde be jî aqtîfbûna kurdan wan derdixe pêş. Kurd bi piranî piştî salên 2000'an bi înternetê ve hev nasîn. Piştî naskirina înternetê kurda berga xwe fire kir, li gor xwe bername çêkirin û bo karên xwe yê kesane û civakî bi awayek aktîf bi kar anîn. Sedema zêde bi kar anîna înternetê wek qadek azad tê dîtin û bi rehetî herkes dikare xwe bigihîne tiştê ku dixwaze. Bi teybetî rewşa kurda li ber çav bê girtin ku di nav dewletan de hatî perçekirin û sînorên fizîkî di navbera wan de hatî danîn, bi hezaran kes li dîasporayê dijî girîngiya înternetê derdikeve holê. Bi saya înternetê sînorên di nava kurda de bê astengî derfet heye ku bên rakirin û kurd bi rehetî û bi ayavekî ekonomîk bi hev re bikevin pêwendiyê.

**Astengiyên di înternetê de**
Di înternetê de astengiya herî mezin ew e ku zimanê kurdî nayê naskirin bi kar anîna wî hinek zehmetiyan derdixe pêş. Di piraniya bername û lêgerînan de zimanê kurdî tuneye. Astengiyek jî ew e ku dewletên ku bixwazin bi rehetî dikarin li ser kurda, di qada înternetê de sansûrê pêk bînin. Herî dawî bernameya bi 1,2 milyar bikaranerê xwe Facebook bi dehan rûpelê siyasî, çandî, dîrokî yên kurda girt. Berpirsiyarê Facebook Richard Allan bi alîgirtiya "rêxistinên terorîst" sedem nîşan da. Li hember van astengiyan piraniya aqademîsyen û lêkolînvan, kurda wek kesên ku herî çalak înternetê bi kar tîne destnîşan dikin.

**Bi kurdî biger**
Ji ber ku sazî û dezgehên di vê warî de alîkarî bikin tune ye piraniya karên div ê hêlê de kesane dimînin û ev jî dibe sedema ku zêde dom nekin. Ji wan teşebûsan yek jî motora lêgerînê ye ku ev demek kin e ketiye xizmetê. Derbarê armanca egerînê de kordînotorê egerînê Kawa Onatli got ku: "Teknolojîya înternetê bûye aleta herî bi qewet di tevahîya çandên dewletan de. Her roj piranîya milletên cîhanê dikarin bê sînor înternetê bi zimanê xwe bi kar bînin. Lê belê 40 milyon kurd ji firsenda gelek înformasyon, perwerdehî û kar bê par dimînin ji ber kû nikarin înternetê bi kurdî bi kar bînin." Onatli di berdewamiya axaftina xwe de balê dikşîne ser zimanê kurdî di qada înternetê de û waha dibêje: "Ji bo ku em kurd bikaribin wek millet pêşkevin, zimanê xwe biparêzin û bibin yek weka milletên din pewîst bû ku internet bi kurdî jî hebe."
Onatli derbarê Egerînê de jî ev agahî




dan me: "Egerîn yekem motora lêgerînê ya bi kurdî ye, ketiye nav lîsteyaya motorên lêgerînê yên cîhanê. Egerîn hemû malperên kurdî berhev dike û tîne ber dest. Dema ku mirov li ser googlê lêgerîna bi kurdî dike, google tîpên kurdî digoherîne û li şûna encamên kurdî, encamên bi zimanên din jî nişan dide. Bi saya egerînê blogê mirov dikare bi hêsanî ji xwe re blog veke û li ser înternetê binivîse û yê bixwaze dikare nivîsên te bişopîne û belav bike."

**Tirşik hinek tirşe lê xweş e**
Di înternetê de malperên herî balkêş û tê hezkirin ferhengên înteraktîf in. Ji ber ku piraniya bikaranerên înternetê dixwazin bi xwe agahiyan barkin li înternetê, agahiyê heye biguherînin û li gora xwe serarast bikin. Tirşik.net jî ji wan ferhengan yeke ku balê dikşîne ser xwe. Avakarê Tirşikê M. Elçî beriya ku Tirşikê ava bike bernamaya wergerandinê wergerîne.comê xist xizmetê M. Elçî armanca tirşikê wiha bi lêv kir: "Tirsik.net ji ber pêdiviyeke berbiçav ava bû. Dema hûn li înternetê binêrin, tu malperek rast û dûrist tune ku kurd lê bicivin û bi zimanê xwe li ser siyasetê, sporê, zanistê, multimediayê û hwd. biaxivin. Platformek tune bû ku stranbêj, hunermend û siyasetmedarên kurd werin rexnekirin û ev kes jî bikarin fikrên xelkê yên derbarê xwe de bişopînin." û wiha domand: "Armancên tirşikê zehf in lê ya herî girîng ew e ku li ser înternetê platformek kurdî were avakirin ku hemû kurd lê bicivin, hev û din rexne bikin, henekan bikin, bi hev re bikenin û pevçûnê bikin û bi parvekirinê zanîna hev zêde bikin û kurdiya xwe jî pêş ve bibin û ji bo nifşên nû, danegeh û arşîvek kurdî bihêlin, ansîklopediyekê bihêlin ku tê de derbarê her tiştî de agahî û şîroveyên kurdî hebin."
Di qada înternetê de kêmasiya mezin ev e ku kurdî zêde nayê bi kar anîn. Herî dawî bo ku di googlê de ziamanê kurdî cih bigre qampanyaya îmzeyê hat destpêkirin. M. Elçî derbarê bi kar anîna zimanê kurdî de mixabiniyê xwe anî zimên û got: "Hê di asta destpêkê de ye. Malperên ku xwerû kurdî ne, hindik in û ew jî malperên nûçeyan in. Ji ber ku naveroka malperên kurdî qels in, bala kurdan nakişînin Bi hatina tirşikê jî em bawer in ku wê gelek kurd êdî bikarin bikevin înternetê û tenê li malperên kurdî bigerin û bêyî ku bikevin malperên bi zimanên din, gera xwe xelas bikin."

# Huner li ser xaka xwe azad e

**Yek ji hunermend û afirînêrên kurd ku dûçarû sirguniyê bûne Armanc e ku bi salane li dûrî welat xebatên xwe didomîne. Armanc bi hêvî ye ku ew jî vegere û dibêje; 'huner ne li ser xaka xwe be, tehma azadiyê jî nade mirov.' Lê çend doz di derheqê wî de didomin û li benda encama wan e.**



AZAD XANZADE

Hunermend Armanc ku di rewşa salên 90'î ya teng û bi xof re derbas bûye û neçarî sirguniyê bûye, di derbarê xebat û jiyana xwe de ji rojnameya me re axivî.

**Tu dikarî behsa rêwîtiya xwe ya hûnerî bikî?**
Dema meriv li salê 80 guhdar dike, dinêre hûnera kurdî bêtir herêmî ye, em bêjin dengbêjî ye. Li cem me li Xerzanê hîngê kurda di nav xwe de şer kiribû wek eşîra, her eşîrê dengbêjê xwe çêdikirin. Ku kilamek li ser wî şerî dibêje îla aliyeke digre. Di biçûktayî de vêya min gelek diêşand. Ev çi meseleye min fêm nedikir, çawa du malbat li hev dixin û derdikevin li ser wê jî stranan dibêjin. Dengbêj hêleke pîs dike hêleke baş dike. Em bi xwe jî dizanin ku aliyê baş dike jî ne ewqas baş e. Bûyerek were li cem me jî qewimî li herêma Omeriya. Di 68'an de çar pênç însanê me jiyana xwe ji dest dan. Tesîrek pir negatîf li ser min çêkir. Ez gelekî pê êşiyam ku kurd bi destê kurda bêne kuştin. Bi kurtasî di şerekî de ku hêlek bilind dikirin perê ezmên û hêlek jî dixistin binê erdê. Ji bo vê hazkirina min li hember mûzîkê kêm bû. Me bo wê bernameyek amade kir. Cara pêşî jî ez li Îskenderûnê di Newrozê de derketim ser dikê. Ez ciwanbûm lê ez jî xistin bernameyê. Min wê demê Şivan Perwer naskir, hûnera kurdî balkêştir hat ji min re. Naveroka w ji me re balkêş dihat, helbestên Cegerxwîn bûn, helbestên şoreşgerî bûn.

**Naveroka stranên te zêdetir li ser bûyerên pêk hatine û şoreşê ye. Tu dikarin li ser vê çi bibêjî?**
Ji 1985 pê ve hûnera kurdî ya bi şoreşê ve girêdayî pêşket. Piştî hevalê min Vedat Aydin şehît ket min ji bo wî qasetek derxis di 92'an de. Navê qasetê 'Herin Welat' bû. Li ser qasetê sûretê rehmetiyê Vedat Aydın hebû. Qaseta min ya sêyemîn bû bi fermî bandrola wê li Tirkiyê derket ku kurdî bû. Tabî dan hevdû. Li Hatayê şaxa HEP'ê me vekir. Tabî doza min tenê bi hûnerê ve girêdayî nebû helbet. Di van demên dawî de min dît ku komployek pir mezin heye ez mecbûr mam ku derkevim. Di 95'an de derbasî Siwêdê bûm. Min di televîzyonê de du bernameyên bi navê 'Zembîlfiroş' yek jî bi navê 'Newal' çêkir. Nêzikê deh salan dewam kir. Bo ez xwe bigihînim kurda çûm gelek welatên ku kurd lê dijîn. Wan kesên ku min dît in niha najîn. Armanca min ewbû ku kesên bi amatorî be jî di hûnerê de cih digrin bibînim. Kasetek min piştî rehmetbûna Apê Mûsa amade kir lê di çapê de hat desteserkirin.

**Di navbera li Ewrûpayê hûner çêkirin û li welêt hûner çêkirinê de ci cihêtî heye?**
Bi rastî li wir psîkolojiyek çawa heye min fêm nekiriye. Tam di dema şer de an di şahiyekê de milet bes dixwaze govendê bigre. Bes dixwazin xwe deşarj bikin. Tu vedigerî welêt mirov di nava kolanan de ji te kilama Helepçe dixwaze. Di şahiyê de jî heman tişt heye. Rast e siyeset jî perçeyek jiyana me ye lê pirî cara ev pêşiya me digre. Nahêle em hûnerek resen bikin. Ez dixwazim bi hemû zaravayên kurdî hûnerê bikim.

**Li ser tarza te tê gotin ku arabesk e. Tu bo tarza xwe û arabeskê dikarî çi bêjî?**
Arbesk jî beşek hûnerê ye lê tu dikarî hinek wê nûjen bikî û nûansên rojava bixî navê. Me wê demê Orhan Gencebay guhdar dikir, em di nav hûnerê de bûn. Stranek min ku bala milet kişand ya bi navê 'Delalê' hebû. 'Delalê' ji hêla Burhan Çeçen ve hat vergerandin li tirkî. Tabî camêr li min geriya lêborîna xwe xwest. Got yekî hatiye firotile min, min nizanibû orjînala wê kurdî ye. Serhat (Koma Çarnewa) û koma xwe bi min re xebitîn. Wê demê Civan û Şivan hebûn, me jî xwast ku rêyek alternatî di navbera wan de bibînin. Bi hevalê zane re ketin studyoyê û qaseta yekem xwastekê min pêk anî. Piştî ez çûm Ewrûpa derfetên min kêm bûn. Yekem kêmasiya min e ji ber ku ez tu amûrên mûzîkê hîn nebûm.

**Li ser mûzîka kurdî tê gotin ku êdî ji kîsê xwe dixwe û nikare tiştekê bixe ser tiştên heyî. Tu di vê warê de çi difikirî?**
Divê her beşê hûnerê di nav gelê me de hebe. Bi hezaran stranên me bûne tirkî, xortên me jî diçin wan dikin kurdî û bi deng dikin. Naveroka wan xurt nîne û resentî kême. Divê keç û xortên me li ser zimên bisekinin. Ku hûnermend bi zanîna xwe teoriya xwe xwe pêş nexe dixitime.

**Te demek dirêj di nav hûnerê de derbas kir. Tu dikarî tiştên balkêş ku rastî te hatine bibêjî?**
Yekemîn strana min 'Ey Raqîp' bû lê min nizanibû ku marş e. Ez derketim ku bibêjim, çawa min got 'Ey Raqîp' her... min dît ku millet bi tevayî rabû ser piya. Ez şaş mam. Min dît hemû bi min re dibêjin. Ez şaş mam. Min got hala çawa herkes vê stranê dizane. Min nizanibû marş e. Demekê hevalekî ji min re got ku dewetek me heye. Navê hûnermendekî ji min re got û got em nikarin xwe bighînînê. Min dit Youtubê de li stranên wî gediya. Paşê tu nabêjî ku kesê ku ew heval nedigihêştiye ez im.

**Di van demên dawî de çend siyasetmedar û hûnermendên kurd vegeriyan welat, tû difikirî ku vegerî?**
Me salên 80'yê jî dîtin. Bi hezaran hevalên min hatin kuştin. Ez tu carî nefikirîm ku ezê herim dervayê welêt. Rê li ber me teng bû. Lê em li wir tenê mêvanin. Niha çend dozên min hene. Ku rewş ber bi baştiyê here ancax emê bikaribin vegerin.

**Di pêşerojê de tu yê di hêla hûnerî de çi xebatan bikî?**
Ezê niha dest bi bernameyekê bikim di qanala Newrozê de. Kasetek nû derdixim û di vê kaseta nû de ezê xwe nîşan bidim, ji bo xwe çêbikim. Dilê min heye ku bîranînê xwe jî binivisînim.



## Armanc kî ye?

Hûnermend Armanc di sala 1960'î de li Mêrînê hat dinê û di zaroktiya xwe de derbasî Îskenderûnê bû. Demek dirêj li wir karên hûnerî û siyasî meşand û dû re neçar ma ku di 1993'an de derkeve derve. Piştî kuştina hevalê wî Vedat Aydin, di sala 1992'an de bo bîranîna wî bi navê 'Vegerin Welat' qaseta xwe ya yekem derxist. Di sala 2000'an de jî albûmek bi navê 'Dîsa' derxist. Di 2006'an de bi navê 'Sînemê' qaseta xwe ya sêyem belav kir û di piştî wê jî albûma 'Şop' derçû. Her çiqas çend heb doz derbarê wî de bi dome jî dixwaze wek navê qaseta xwe ya yekem "Herin Welat" bixwe jî li ser vê sozê bisekine û vegere welêt.